Demokrasî bo Îranê
Hejmar:6 Aprila 2004
Rojnameyeke siyasî û çandî ye

# agiri

Otonomî bo Kurdistanê
Banemera 1383'e Rojî
Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

# Dîsan Komara Îslamî îdam û cinayet afirand

## Aqibet Komara Îslamî bi kuştina 6 xebatkarên demokrat ku 7 sal û nîv berî niha Bizava Îslamî teslîmî vê rejîmê kiribûn, îtiraf kir




**Li darxistina rê û resma behî û sersaxiyê derheq ragehandina nûçeyê şehîd kirina 6 xebatkarên Partiyê**

Piştî ragehandina nûçeyê şehîd bûna 6 xebatkarên PDK Îranê ku di encama kiryareke cinayetkarane de, payîza sala 1375'e Rojî (Octobera 1996), ji aliyê Bizava Îslamî a Kurdistanê ve teslîmî Komara Îslamî hatibûn kirin, roja pêncşemî 27'ê Xakelêweya 1383'e Rojî (15.04.2004) li yek ji binkeyên ser bi Deftera Siyasî bi beşdariya birêz Ebdula Hesenzade, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, endamên rêberiya Partiyê û her wiha bi pişikdariya Pêşmerge û malbatên wan rê û resmek hêja û berfireh pêk hat.

Di destpêka rê û resmê de, Sekreterê Giştiye Partiyê bi vê boneyê axaftin kir. Piştre basek derheq vê bûyerê û biserhatiya her yek ji van şehîdan, **Erşed Rezayî, Mihemed Ezîz Qadirî**, **Yûnis Mihemedpûr**, **Ednan Ismayîlî, Mizefer Kazimî** û **Merûf Suhrabî** ji aliyê Kekê Mihemed Nezîf Qadirî, endamê Komîteya Navendî û berpirsyarê Navenda 1'e Kurdistanê ve hate pêşkêş kirin. Her wiha peyama malbata şehîdan ji aliyê Semîra Qadirî, keça Şehîd Mihemd Ezîz Qadirî hate xwendin.

Di dawiyê de pişikdarên rê û resmê behî û sersaxiya xwe Pêşkêşî malbatên serbilinde şehîdan û Sekreterê Partiyê kirin.

# Daxuyanî



## Derheq eşkere bûna tawan û cinayeteke hovaneye din a Komara Îslamî ya Îranê

**6 xebatkarên Partiya Demokrat ku nizîk 7 sal û nîvan berî niha ji aliyê Bizava Îslamî a Kurdistanê ve tehwîlî Komara Îslamî hatibûn kirin, her wê demê ji aliyê Komara Îslamî ve hatine îdam kirin.**

**Doma wê bo rûpelê 2**

# Li Berlînê perde li ser tabloya bîranîna şehîdên Mîkonosê hate hildan




Deqa nivîsara Tabloya bibîranîna goriyên terora Mîkonosê bi zimanê Elmanî

Rapora vê rê û resmê û çend wêneyên wê di rûpelê 3 de bibînin û bixwînin.

**Deqa nivîsara Tabloya bibîranîna goriyên terora Mîkonosê bi Kurdî**

Li vî cihî di xwaringeha Mîkonos a berê de, roja 17.09.1992'an nûnerên Partiya Demokrat a Kurdistanê (Îran)
Dr. Sadiq Şerefkendî
Fetah Ebdulî
Homayun Erdelan
ligel siyasetvanê nişteciyê Berlînê
Nurî Dêhkurdî
ji aliyê desthilatdarên Îranê yên wê demê ve hatin kuştin.
Wan jiyana xwe di xebat bo azadî û mafê mirovan de ji dest da.

Daxuyanî

# Derheq eşkere bûna tawan û cinaketeke hovaneye din a Komara Îslamî ya Îranê

Hevwelatî ên birêz!

Xelkê fîdakare Kurdistanê!

Endam, alîgir û dostên PDK Îranê!

Wek ji bîra me de ye nêzîk bi heft sal û nîvan berî niha, li şeva nozadeh li ser bîstê Octobera 1996'e Zayînî, hemberî 28'ê Rezbera 1375'e Rojî, heft şoreşvanên Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi navên: Erşed Rezayî, Daryoş Islamdost, Mihemed Ezîz Qadirî, Yûnis Mihemedpûr, Ednan Ismayîlî, Mizefer Kazimî û Merûf Suhrabî, di halekê de ku ji memûriyeta Partiyê dizivirîne binkeyên xwe, li nêzîk bajarê Helebçeya Kurdistana Îraqê ji aliyê çekdarên Bizava Îslamî ya Kurdistana Îraqê ve hatin girtin û bê ser û şûn bûn. Çend rojan piştî wê bûyerê eşkere bû ku ew xebatkarane "teslîmê" Komara Îslamî hatine kirin.



Sekreterê Giştî yê PDK Îranê ku wê demê li sefera derveyî welat bû, roja 26'ê Oktoberê di nameyekê de bo rêzdaran Petros Xalî Sekreterê Giştî yê Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, Morîs Kapîtorn nonerê taybetî yê Komîsyona Mafên Mirovan bo vekolîn li ser rewşa mafê mirovan li Îranê û Piyer Morwa Serokê Enternasyonala Sosyalîst ew ji wê karesat û bûyerê agehdar kirin û daxwaz ji wan kir bo rizgar kirina canê wan şoreşvanan cehdê bikin. Di nameya Sekreterê Giştî de hatibû:

"Bi baldan bi dijberiya rayedar û karbidestan bi hemû azadîxwaz û neyaran re nemaze ew şoreşvanên PDK Îranê, niho tirsek micit gefê ji canê van xebatkarên rêya azadî û demokrasiyê dike û kes û kar û hevhizrên van bi xurtî nigeranê qeder û çarenivîsa wan in".

Li wî çaxî heta niho hemû cehd û bizaveke kes û karên girtiyan ji aliyekê û rêberiya Partiya wan ji aliyeke din bo agehdar bûn ji qedera wan şoreşvanane bê encam mabû û tenê yek ji wan bi navê Daryoş Islamdost di çaxê pûç kirina fêl û pîlaneke dijî miroviye kirêgirtiyên Komara Îslamî de hate rizgar kirin. Cehd û bizava Paretiya Demokrat li cem kom û komeleyên cîhanî bêrawestan dom kir, heta sala rabihorî Sekreterê Giştî yê Partiyê di nameyekê de bo Sekreterê Giştî yê Rêxistina Neteweyeên Yekbûyî birêz Kofî Enan daxwaza alîkariyê jê kir û ev daxwaz û xwestike ji hêla dehan û sedan kesayetiyên navneteweyî piştgirî jê hate kirin. Aqibet di bin zext û givaşa bîr û raya giştî ya cîhanê û alîgirên Mafê Mirovan de Komara Îsalmî neçar bû perde li ser qulçikeke herqas biçûk ji cinayet û tawanên xwe hil bidet û îtirafê bike ku mixabin şeş şoreşvanên Partiya me piştî bi destdan (teslîm kirin)a wan yan dest bi cih yan piştî çend heftiyan îşkence û azara leşî û canî bêdadgeh û mehkeme kirin ji aliyê celadên rejîmê ve hatine îdam kirin. Balyozê Komara Îsalmî li Birîtanya di nameyekê ku roja 29'ê Marcha 2004'e Zayînî di bersiva nameya 11'ê Novembera 2003'e ya birêz Cêrî Korbîs, cihgirê serokê Girûpa Mafên Mirovan li Parlamena Birîtanya de bo wî rêzdarî şandî ye û wî birêzî jî em ji vê yekê agehdar kririn e, ragihandî ye ku ew xebatkarane piştî zivirîn bo binkeyên xwe tevî Bizava Îslamî ya Kurdistanê tûşî şer bûne, şeş kesên wan şehîd bûn, û yek ji wan jî bi navê Daryoş Islamdost bidîl hate girtin ku piştre bi cehd û Bizava hinek ji xizmên wî hatiye serbest kirin. Her di vê nameyê de îdia hatiye kirin ku ew Ezîzane bi hêzên Rejîma Îslamî re tûşî şer bûn û Pasdareke rejîmê bi destê wan hatiye kuştin.

Seba vê yekê em tevî supas ji cehd û têkoşîna hemû ew kesayetiyên navneteweyî ku alîkarî kirin, qedera şoreşvanên demokrat - herqas tal jî be – rohn bibe, radigehînin ku Komara Îslamî lêrede jî kêmek rastî tevî behrek ji derew û boxtan û nerastiyan teslîmê xelkê Îran û cîhanê kiriye. Ew hevalane di sefera xwe de ne bi çi hêzên Komara Îslamî re tûşî şer û lihevdanê bûne û ne li hemberî çekdarên Bizava Îsalmî de jî dest bo çekê birine. Belku bi hegera wê ku ew bi dijminê xwe nezanîne, bi wan re çûne binkeyên van û hetanî demekê bi berevajiya hemû rê û cihên ayînî û exlaqî û mirovî dest û çavên wan girêdane û teslîmê Komara Îslamî nekirine, nezanîne çi merem û armanceke qirêj û mirar hene. Daryoş Islamdost jî piştî teslîm kirin bi Komara Îslamî çi demekê ji aliyê Bizava Îsalmî ve nehatiye girtin. Partiya Demokrat a



Kurdistana Îranê di pêşerojê de hinek tiştên din jî di vê derheqê de dê eşkere bike.

Niha erkê rêxistin û saziyên welatparêz û nemaze Partî û Rêxistinên Kurdistanî ye ku zext û givaşê bixin ser Bizava Îslamî bo vê ku rastiya wê kiryara bêşermane ku bi dijî şoreşvanên PDK Îranê encam daye bo bîr û hizra giştî ya Kurdistanê eşkere bike.

Evê Bizavê dema xwe her terze têkiliyeke xwe bi vê bûyerê înkar dikir, lê niho ku rejîma Îranê bi vî awayî perde li ser dest têde bûna vê hel dide, hewce ye helwesta xwe şirove bike.

Belê, hevwelatî ên birêz! Eva qedera pareke biçûk ji wan hezaran şoreşvanên rêya azadiyê ye ku piştî 90 mehan cehd û têkoşîna xêrxwazan perde li ser tê vêdedan. Herê gelo ew roja ku Komara Îslamî tûşî qederek wek çarenivîsa rejîma Sedam Husên li Îraqê dibe, dê çend û çendîn hezar gorên bikom li welatê belalêdayiye me ku kevnarperweran navê wê danane **Îrana Îslamî**, derbikevin?

Di vê derheqê de em daxwazê ji bîr û hizra giştî ya xelkê Îranê û derve û nemaze ji kom û komeleyên cîhanî yên alîgirên mafên mirovan dikin zext û givaşê bixin ser karbidestên Komara Îslamî heta neçar bikin hemû rastiyan di pêwendî tevî îdama wan şoreşvanên demokrat eşkere bike û meytên wan teslîmî kes û karên wan bike.

Em tevî eyan kirina vê qasa xem û kovanê ji şehîd bûna wan şeş şoreşvanên gernas, tawana dijî mirovî ya celadên Komara Îsalmî bi tundî mehkûm dikin û daxwazê ji tev azadîxwazên Kurdistanê û seranserê Îranê jî dikin ku dengê xwe bo şermezar kirin û kifş kirina zêdetire wê tawana hovane tevlî dengê me bikin. Her seba wê yekê jî pir bidil em serxweşî û hevderdiyê pêşkêşî gişt kes û karên wan şehîdane û hevçeperên wan dikin û berxwedanî û sebrê ji wan re bi hêvî dixwazin.

Silav ji canê paqije şehîdan: Erşed Rezayî, Mihemed Ezîz Qadirî, Yûnis Mihemedpûr, Ednan Ismayîlî, Mizefer Kazimî û Merûf Suhrabî û tev şehîdên rêya rizgariya Kurdistanê

Berdewamî bo rêya xebata wan û mukûm bûn bo armancên pîroze wan

**Deftera Siyasî ya Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**26'ê Xakelêweya 1383'e Rojî 14'ê Aprila 2004'e Zayînî**

# Li Berlînê perde li ser tabloya bibîranîna goriyên Mîkonosê hate hildan


Tabloya bîranîna goriyên Xwaringeha Mîkonosê di Septembera sala 1992'an li Berlînê


Dîmenek ji dema hilgirtina perdeyê tabloyê


Monîka Tîmen şaredarê devera Şarlotênborg – Wîlmêrs Durf a Berlînê


Dr. Mîro Elyar nûnerê PDK îranê

Rê û resma perdehildan li ser tabloya bîranîna goriyên terorîzma Komara Îslamî a Îranê li Xwaringeha Mîkonosê di Septembera sala 1992'yê de, demjimêr 5'ê êvariya roja sêşemî 20'ê Aprîla sala 2004'e Zayînî bi pişikdariya zêdetir ji hezar kes ji kesayetiyên Kurde Îranî û Ewropayî û her wisan hejmarek berbiçav ji xelkê medenî û bi berhev bûna hijmarek zaf ji nûçegihanan di taxa Şarlotênborg – Wîlmêrs Durf li bajarê Berlînê hate lidarxistin.

Di vê rê û resmê de Xatûna Monîka Tîmen Bajêrvanê devera Şarlotênborg – Wîlmêrs Durf di gotarekê de merem ji danîna vê tabloyê eyan kir û got: "Di vê deverê de 300 tabloyên bîranînê hene, lê eva tiştek din e û dozek girîng û mezin li dûre bû. Egera wê jî wedigere bo kakila bûyera Mîkonosê ku terorîzma dewletî li pişt de bû. Her wisa Xatûna Tîmen da eyan kirin ku dewleta Komara Îslamî a Îranê zor cehd kir ku pêşî ji danîna vê tabloyê bigire, lê belê him berpirsyarên deverê û him Bajêrvaniya Berlînê li hemberî destêwerdana wê rejîmê de berxwedanî ji xwe nîşan dan. Herwisa wê rêzdarê got: "Ev tabloye ji ber wê çandê li vir tê danîn ku navê gorî û destûrder û sebebkarên vê bûyerê bo heta hetaye di dîroka Berlînê de bimîne.

Di vê rê û resmê de nûnerê PDK Îranê, birêz Dr. Mîro Eliyar peyama Sekreterê Giştî yê PDK Îranê ( ku bi vê boneyê hatibû şandin) xwend û paşan gotara xwe pêşkêş kir. Her di vê rê û resmê de xûşke Kejal, hevjîna Şehîd Fetah Ebdulî û xûşke Sara Dêhkurdî keça Şehîd Nûrî Dêhkurdî gotarên xwe xwendin û sipasiya xwe jî pêşkêşî berpirsyarên bajarê Berlînê û wê hejmara zore xelkê kirin ku di vê rê û resmê de berhev bûn. Hejî gotinê ye ku di vê rê û resmê de yek ji parêzerên malbata qurbaniyan û çend kesayetiyên din axivîn û herwisan komek ji kesayetiyên din yên cîhanê peyamên xwe bo wê rê û resmê şandibûn.

Rê û resm bi xwendina peyamên van kesayetiyane dawî pêhat:

- Peyama Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, birêz Ebdula Hesenzade
- Peyama birêz Loyîs Eyala Sekreterê Giştî yê Enternasyonala Sosyalîst.
- Peyama birêz Lord Îvêbrî Berpirsyarê Girûpa mafê mirovan a Parlamena Brîtaniya.
- Peyama birêz Stan Nîûns Berpirsyarê giştî yê Lîbirasiyona Berîtaniya.
- Rêxistina Dijî Empiryalîzim û Regezperestiyê.
- Peyama Xatûna Kilodiya Rût endamê Parlamen û Berpirsyarê kar û barê têkildare mafên mirovan di dewleta Elmanya de.
- Peyama birêz Hejîr Teymûriyan.

# Xeteke zêrîn li ser lewheya azadiyê

Hêmin Seyidî
Hiwa1324@yahoo.com

Kîjan mirov dikarin her tim û bo heta heta bimînin? Felsefeya jiyanê çî ye? Karwanê mirovahiyê rêyeke dijwar ji bo gihîştin bi bajêrvaniya îro pêviye. Rêyeke pir evraz û nişîv ku her yek ji rêvîngên vê karwanê nirxek ji bo gihîştin bi jiyaneke xweş ji mirovahiyê re dane. Ev meşa her çend ku bi kom bûye û goriyên vê rêya dijvar zaf in, lê di vê navberê de her tim kesanek hebûne ku ji yên din zêdetir di vê rêyê de cehd û tekoşîn kirine û bi fam kirina hewceyî û hest kirina bi berpirsyariyeke zaftir, bi dil û can hemû îzayên wê tab kirine û li dawiyê de ji bo gihîştin bi vê armanca pîroz ( rizgariya mirovan) bihaya herî mezin a jiyanê – canê xwe – jî gorî kirine. Ji bona domandina vê rêya pir ji şanazî a mirovahiyê, mirovan cehd û tekoşîn kirine ku rêz û hurmetê ji yad û bîranîna van mezinane bigirin û wan wek berjenga xwe û nifşên pêşerojê bihesibînin. Di vê pêvajoyê de bû ku her tim sax bûna yad û bîranînan di mejiyan de cihê xwe girt û bawerî hebûn bi vê yekê bû hewceyiyek di jiyana rû li tekmîl bûna mirovahiyê.

Rêyên sax kirina yad û bîranîna gelek in: Huner, tore, xebat, evîna domandina rê û …., Lê renge huner bi tayên cur bi cure xwe ve kereseyeke herî baş be bo hurmet girtin ji mirovên mezin û di vê navberê de "mêimarî" û peyker (heykel) çêkirin dikare rolê hurmet girtina "fezayî" (esmanî) û "fîzîkî" a yad û bîranînan bilîze.

"Êstanka Rozîn" li Qefqazê, "Çekware" li Amerîkaya Latîn de, "Rozald Gizamborg" li Ewropa de û "Mihatma Gandî" li Asiya û… ji wan kesayetiyên bê mînak bûne ku ne tenê di welatên xwe de, belku di gelek welatên cîhanê de, bi çêkirina peykerên bîranînê, rêz û hurmet ji wan hatiye girtin. Lê ew neteweyên ku hêj dujminên wan nehêlane ku bigihîjine azadî û pileya cîhaniye xwe, li dema rêz û hurmet girtin ji mezinên xwe jî zulim li wan hatiye kirin. Neteweya Kurd yek ji wan netewane ye ku gelek caran dujminan bixtan û bê hurmetî bi rêberên ji dest çûyiye wan kirine û firnaxa neteweyî a wan hatiye şikandin, nîgarên şehîdên wan dişewitînin, pirtûkên wan radiwestînin û nahêlin ku biweşînin, heta tevî hizra çêkirina peykerên bîranîna wan jî dijberiyê dikin û… lê tevî van hemû talî û nexweşiyan, ne neteweya Kurd rêberên xwe ji bîr dike û ne jî civaka mirovahiyê li hemberî van hemû bê hurmetiyê ku di rastî de bê hurmetî bi şiûra hemû mirovan e dê bê alî bimîne. Ji ber ku îrade û tekoşîna mirovan bilindtir e ji kiryara dijî geliyan.

Yek ji wan rêberên nemir ê neteweya Kurd şehîdê hertim sax Dr. Sadiq Şerefkendî ye. Dr. Sadiq Şerefkendî jî wek Gandî ji nav xelkê xwe de rabibû. Ew jî ji hewceyî ên zeman (dem) têgihîştibû û ji bo gihîştina bi wan hewceyiyan tewaya hezên xwe ên



Roja sêşemî 20'ê Aprîla sala 2004'e Zayînî perde li ser tabloya bibîranîna şehîdên Mîkonosê hate hildan

şexsî danîbûne qeraxê û dîsan wek Gandî ji dilê Ewropaya xweş wegeriyabû nav xelkê xwe yê belengaz û destdeng de, û li dawiyê de jî bi awayekî necamêrane hate teror kirin. Lê Dr. Sadiq li nav xelkê xwe de nehate şehîd kirin. Bi hezaran kîlometran dûr ji cihê ji dayîk bûna xwe hate teror kirin. Heta nehêlan meytê wî jî bînin welatê wî, xelkê Kurd ê daxbar heta nekarî seba ji dest dana rêberê xwe bigirîn jî. Nehêlan ku termê wî teşyîi bikin. Nehêlan ku rê û resmekê ji bona yad û bîranîna wî pêk bînin. Nehêlan ku bo bîranîna wî rêberî peykerekê çê bikin. Lê erê gelo civaka navneteweyî dikare li hemberî ev hemû zulm û zor û bê hurmetiyan bê alî be? Ne! ji ber ku Dr. Şerefkendî wek mêrxasên berî xwe, tenê yê gelê Kurd nebû. Civaka azadîxweziya cîhanê ew ji dest dabûn. Gerek karek bihatba kririn. Gerek dad û hewareke mirovî ser bigirtiba. Gerek axaftinek bihatiba kirin. Qaziyê cesûr ê Berlînê qiseyek kir ku bo heta heta dê her bimîne. Her çend ku qazancxweziya deshilatdaran nehêla ku ev gotina gewherîn, bibe sebebê vê yekê ku celad bihêne ceza kirin, lê ev meşa, ev gotina, ev xwîna qet nayê ji bîr kirin. Vê carê ji gewiyeke din hewarek din hate bihîstin. Xişt li ser xişt, bi evînê, berjengek hate çêkirin. 20'ê Aprîla 2004'an, kêmtir ji 12 salan piştî wê cinayetê, pitir ji 7 salan piştî derkirina wê hikmê cesûrane, evîndarên azadiyê, rêvîngên wê rêyê, dersxwanên wê xwendingehê, hevalên wî yarê, daxbarên wê derdê, bi nûneratiya tewaya wîjdanên hişyar li hev civiyan û li ser vê tabloya dîrokî perde wêde dan.

Ev serkevtina mezin tevî hewara nerihetiya terorîstan rû bi rû bû. Rastî neyarên vê tabloya bibîranînê kî ne? Çi rabihoriyek hene? Pêşeroja xwe çawa dibînin? Piştî micit bûna xebata cîhanî dijberî terorîzmê, tewaya ewên ku bingeha deshilatdariya xwe li ser vê dîroka bi sam ava kirbûn, ji sax kirina perwendeyên xwe tûşî tirsê bûne û bi hemû şiyana xwe cehdê dikin ku xwe ji destê vê kabûsê rizgar bikin. Kabûsek ku vê carê tenê kabûs nine, balkû reng û rûyê rastiyê bi xwe ve digire. Ji bextreşiya wan vê carê civaka cîhanî li ser biryara xwe micit e. Ewên ku biryara kuştina Dr. Şerefkendî û dehan kesên din ji derveyî serhedên xwe derkirine, ewên ku serbilindiya wan beşdarî li emelyatên terorîstî de bû, û niha pala xwe dane kursiyê bajêrvaniyê û gefa li bajêrvaniya herêmî a Berlînê dikin, ewên ku nav û nîgarên terorîstên şareza ên cîhanê li ser kulan û dîwarên bajaran didan, ji bo deshilata biyome xwe dê dest bo her cehd û tekoşînekê bibin. Dixwazin bi qewlê xwe "zindî" bimînin. Lê ew nizanin. Ew bi rastî nizanin ku nemir kê ne? Nizanin ku bo "zindî" manê gerek çawa bijîn. Hogo dibêje: "Yên zindî ew in ku xebatê dikin. Ew in ku can û leşê wan pir e ji hêvî û baweriyên mukum (qahîm). Ewên ku ji evrazeke tunde muqedera xeternak jêlde diçin, û şev û rojan, bi fikir, li xeyala xwe de an evîneke mezin hene, an erkekî pîroz."

**Ji Farsî bo Kurmancî: Şehab Xalidî**

# Tevgera Milî–Demokratîk a Kurdistanê û bi cîhanî bûna demokrasiyê

Erfan Rehnimûn

Bûyera 11'ê Septemberê bi baldan bi wan encamên ku jê ketin û jê dikevin, bûyerek bû ku dîroka cîhanê bi hemû aliyên xwe ve xistiye nava qonaxekî nû de. Bihagiranî û girîngiya vê qewimînê bi qasekê bû ku cîhana berî 11'ê September û piştî 11'ê Septemberê xiste nava wêjeya siyasî de. Ev du serdemane bi sedema rikeberî û têkiliyên navneteweyî ve, cudahiyeke bingehîn û berbiçav pey re hene. Ji ber vê yekê em dikarin bibêjin ku serdemê pêş 11'ê Septemberê bi taybet di deh salên 90'an a sedsala 20'an de rikeberî û têkiliyên navneteweyî, zêdetir sermaye danîna rasterast, taybetî (xasmanî) kirina aborî û azadiya bazirganiyê û … li xwe digirt.

Lê belê eşkere ye ku ev rikeberiye li deh sala yekem a sedsala 21'an de – anku yekem dehsala piştî 11'ê Septemberê – pitir siyasî ye û li derdora peyvên ***mafên mirovan, demokrasî, dijberiya bin ajo (binyatgerayî)ya Îslamî û terorîzma navneteweyî*** de dizivirin. Bi vê sedemê mirov dikare bûyera 11'ê Septemberê bi destpêka baldana bingehîn bi aliyên siyasiye bi cîhanî bûnê binirxîne.

Ravekarên siyasî li ser vê baweriyê ne, ji ber ku cîhanî bûna aborî, çend salan pêş cîhanî bûna siyasetê (demokrasî) dest pê kiriye, pêk hatina vê cudahiya di navbera cîhanî bûna aborî û siyasetê de bûye sedema zêde bûna berxwedaniya terorîzma navneteweyî li hemberî cîhanî bûnê de, lewre Rojava bi giştî û Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê di sîstema navneteweyî piştî 11'ê Septemberê de, dixwazin vê valahiyê ku çavkaniya vê cîhanî bûn e, tijî bikin. Di çax û serdemê cîhanî bûna siyasetê de hin peyv tên xuya kirin ku sînor û çarçoveyeke diyarî kirî ji wan re nahê dest nîşan kirin. Peyvên weke tenahî, ewlekarî û nasname (howiyet) çi din bi sînorên bi fermî naskirî ên derbas bûyî nahên sînordar kirin. Bûyera 11'ê Septemberê bû sedema wê yekê ku peyva ewlekariya neteweyî mana û wateya nû bi xwe ve bigire û stratijiya tenahiya neteweyî a Amerîka piştî vê bûyerê guhertineke kûr û bingehîn bi ser de bihêt.

Beriya 11'ê Septemberê, li destpêkê de gef û lome bi awayekî objektîv, berbiçav û pûç xuya dikirin û piştre gef dihatin pênase kirin û ji bo zêrevanî û pûç kirina wan gefan pêngav dihatin avêtin. Lê di stratijiya nû ya tenahiya neteweyî a Amerîka, li çav serdemê berî 11'ê Septemberê çi din derfet bi gef û lomeyan nahê dayîn ku metodekî objektîv û berbiçav bi xwe ve bigirin.

Niha berî vê ku gef , tirsê li ser tenahiya neteweyî a Amerîka çê bikin û biçine qonaxekî bi kiryar de, têne nirxandin û lêkolîn kirin û pêş evê ku biqewimin li hember de helwest tê girtin û têne pûç û vala kirin. Ev stratijiya nû a DYA'yê ku bi aştiya her dem hatiye bi nav kirin, di çarçoveya xebat û têkoşîna dijberî terorîzma navneteweyî de çûye nav qonaxa bi kiryar de û li ser hin çalakiyên dîplomatîk, leşkerî, êrîşên demî pêkhat şikên hatiye darêtin.

Bi awayeke giştî em dikarin bibêjin ev metoda ku DYA'yê bi navê xebat dijberî terorîzma navneteweyî de girtiye ber xwe guhertinekî mezin li siyasetên derveyî ên wî welatî de û ev zivirîne, guhertineke bingehîn di pêvajûya siyaseta Rojhilata Navîn de dê pêk bîne. Lewre eva berê bi awayekî ne diyar navê nojdarên nezma nû a cîhanî jî ji wan re hatibû danîn, niha di kiryar de çûye nava qonaxeke nû a ektîv de. Ev jî vedigere ser vê hindê ku siyasetvanên DYA'yê li gotin û şiroveyên xwe de, terorîstan bi komek xelkên bê welat û bê nasname dihesibînin û li gorî biryarnameyên Civata Ewlekariya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, xwe berpirsyar dizanin ku li her devereke cîhanê dewsa wan hilgirin û derbên giran ji wan bidin.

Di bin tîrojka wê şiroveya ku hate bas kirin, bo me eyan dibe ku mafên biryardana çarenivîsa neteweya Kurd berî vê ku pirsekî aborî bibe, dozekî xwedî naverok a siyasî ye û her ev siyasî bûna pirsgirêka Kurd û Kurdistanê dibe egera vê çendê ku ev doze bibe yek ji dozên eslî û bingehîn û cihê gengeşeya piştî serdemê 11'ê Septemberê, û her ji niha pêve proseya ber bi pêşve çûna vê dozê di dilê Rojhilata Navîn de bi awayekî berbiçav xuya bibe.

Cîhanî bûna siyasetê (bi wateya geş û xurtir bûna roj bi roj zêdetir a demokrasiyê) prosêsek e ku di dema herifîna Dîwarê Berlînê û rabûna bayê azadî û demokrasiyê ber bi Rojhilatê Ewropayê dest pê bû û piştî bûyera 11'ê September a 2001'ê bi lez û bi awayekî xurt ber bi Rojhilata Navîn ve rabûye . . . Wê proseyê di destpêkê de karî rejîmên kevneparêz û Faşîstî ên Taliban a Efxanistanê û Partiya Bees a Îraqê mîna berbendên micit binbir bike û di welatê Îraqê de akincî bibe. Gihîştina pêlên bi cîhanî bûna siyasetê ber bi Rojhilata Navîn, bi taybetî bi kûratiya welatê Îraqê, bûye sedema vê yekê ku gemiya tevgera Milî-Demokratîk a Kurdistanê bikeve ser avê û pirsa Kurdan bo pirsekî micit a cîhanî biguherîne.

Niha doza Kurd û Kurdistnê bi sedema bi cîhanî bûna siyasetê ji pirseke li çarçoveya herêmî de hatiye der û bûye pirsekî cîhanî û hemû aliyane.

Ava bûna Îraqekî demokratîk ku tê de gelê Kurd li Kurdistana Îraqê de bi parekî berbiçav ji mafên diyarî kirina çarenivîsa xwe gihîştibe, dibe bi berjengekî objektîv û berbiçav bo gelê Kurd di Kurdistana Îranê de û mîna ders û mînakeke rastîn û binirx tê mêze kirin.

Rejîma serberedayî a Komara Îslamî, rejîmek e ku serê xwe ne li hemberî bi cîhanî bûna aborî û ne jî li hemberî bi cîhanî bûna siyasetê de naçemîne.

Ev rejîme heke deriyên xwe bi rûyê cîhanî bûna aborî ne veket, bi baldan bi bingeha serberedayî û dijberî azadiyê ku heye, îmkan û derfeteke herî biçûk jî bi rûyê cîhanî bûnê ve naveket.

Lewma piştî cihgir bûna aştiyeke rêjeyî di Îraqê de û piştî birêve çûna hilbijartinekî azad û demokratîk di vî welatî de, Komara Îslamî dê yek ji wan kême welatan be ku bi berevajiyê hatina avê dê melevaniyê bike û li pêşerojeke ne hinde dûr de dê bikeve rikeberaniyeke rasterast tevî demokrasî û cîhana bajêrvanî û pêşverû de. Li pêvajûyekî wiha de bizava Milî-Demokratîk a gelê Kurd di Kurdistana Îranê de wek bizavekî Milî -Demokratîk a gelê Kurd di Kurdistana Îraqê de, ji tevgerekî herêmî vê biguhere bi tevgerekî pan û berfirehtir û bi hêz û karîneke zêdetir ve bo dîyarî kirina çarenivîsa gelê kurd li Kurdistana Îranê de dê gavan hilgire. Tevgera Milî-Demokratîk a gelê kurd li Îranê de, bi rêberiya Partiya xweştivî û pêşênge xwe - PDK Îranê - bi baldan bi esliyeta demokratîke vê û baweriya zafe vê bi azadî, demokrasî, peloralîzm û yasa û zagonên giştî ên mafên mirovan, xwe re dibîne ku xebat û têkoşînê tevî rastiyên nû ên derve û cîhanê ser û ber bike. Ne tenê li kurdistanê de belkî wek hêzekî demokrasîxwaz û pêşketî di seranserê welat de jî berpirsyarî ên dîrokî bi encam bigehîne.

# Refrandoma sala 1358'an a diyarî kirina Nîzama Îslamî li Îranê

Dûzgulole, azad@kurdistanmedia.org

Di dîroka siyasî a Îranê de roja 12'ê Xakelêwê girîngiyek xasmanî heye. Rojên 10 û 11'ê Xakelêweya sala 1358 (1979)'ê, bi roja Rifrandom bo diyarî kirina sîstema hikûmetî ya piştî hiloşandina rejîma Paşatiyê hatibû diyarî kirin. Piştî serhildana gelên Îranê û azad bûna welat ji dest dîktatoriya Paşayetiyê, eva gavek demokratîk bû ku rejîma taze bi deshilat gihîştî diavêt. Rê bi gelên Irene re hate dan ku di Refrandomeke giştî û seranserî de sîstema hikûmetiya dilxwaze xwe hilbijêrin. Lê berevajî vê gava demokratîk, xirabtirîn awayê bin pê kirin û zevt kirina mafê hilbijartinê hatibû veşartin. Di Refrandoma han de xelkê Îranê neçar hate kirin ku di navbera rejîma herifyayî a Şa û rejîma Komara Îslamî de yekê hilbijêrin. Ji ber ku rejîma Paşayetî her ew sîstema bû ku gelên Îranê bi dehan hezar kes di pêxema hiloşandina wê de gorî kiri bûn û zilm, zordarî, êş û elemên wan her di dilê gelên Îranê de zindî mabûn, lewre gelên Îranê hatin xapandin. Di encamê de di roja 12'ê Xakelêweya sala 1358 (1980), di demekê de ku eşkere bû 98 ji sedê ji pişikdaran di refrandomê de ku tê de tenê **"Arî"** (yanî erê) û **"Na"** (yanî na) bi peyvekê deng dane Komara Îslamî, Xumeynî ev roje bi **"Roja Komara Îslamî"** binav kir û ji wê demê bû ku hikûmeta olî li Îranê, ji hêla hikûmetên cur bi cur ên cîhanê bi fermî hate nas kirin. Hetanî wê demê tiştek bi navê sîstema Komara Îslamî li tu herêm û devereke cîhanê nehatibû ceribandin. Ji bilî wan Melayên deshilatdar, kesê nedizanî ku Komara Îslamî çiye û ji kuderê hatiye!

### Gelê Kurd hilbijartin baykot kir!

Gelê Kurd li Kurdistana Îranê ku di serkevtina şoreşa sala 1357 (1979)'an de roleke girîng lîstibû, li desketên şoreşê hatin bê par kirin û çi rûmetek ji bo xebat, têkoşîn û daxwazên demokratîk û aştîxwazaneye Kurdan nehate girtin û ji ber wan rastiyên kifş û eyanker ku me serê de bas kirin PDK Îranê û hêzên siyasî ên din yên Kurdistana Îranê bi nîşandana nerazî bûna xwe ji neadîlane û ne demokratîk bûna Refrandomê ew hilbijartine baykot kirin û tê de pişikdarî nekirin. Encama Refrandomê li pêşde xuya û rohn bû, çunku ji aliyekê kêm kes hazir bûn ku deng bi vegerandina rejîma paşatiyê bidin û ji aliyekî din avakerên rejîmê ji bilî Komara Îslamî bi çi cure sîstemek din razî nebûn. Bo nimûne Xumêynî, rêbrê Oliye wê demê her zû ragehand ku ***"Komara Îslamî belê, Îslam belê û Komara Îslamî na, yanî Îslam na".*** Ev gotina Xumêynî (heke kesek deng bide Komara Îslamî, deng daye Îsalmê, heke kesek deng nede Komara Îslamî, deng nedaye Îslamê) ev rastiya han bo me dide selimandin ku wan Komara Îslamî a dilxwaze xwe bo gelên Îranê diyarî kiribûn, lewre di roja 12'ê Xakelêwê ku encama refrandomê hate ragehandin, Komara Îslamî bi piraniya nêzîk bi hemû dengan hat hilbijartin . Di wê demê vere hetanî niha roja 12'ê Xakelêwê weke roja Komara Îslamî hatiye binav kirin.

### Lênêrînek li ser rewşa niha ya hikûmeta Îslamî a Îranê

Bûyerên ku di van 4-5 salên derbas bûyî de li Îranê hatine holê, nîşan didin ku ji qasa van milyon kesên ku li roja 12'ê Xakelêwe ya sala 1358'ê, ava kirina Komara Îslamî bi dengê xwe mimkin kirin, niha ji bilî kêmaniyekê bo xuya kirina kêfxweşî û pîroz kirina wê rojê kes nemaye. Rê û resma roja 12'ê Xakelêweya îsal di demekê de li Îranê hate lidarxistin ku welat hesastirîn dema xwe di heyamê 25 salên derbas bûyî de diqetîne. Rayedar û berpirsên pişka piropagende a Hikûmeta Îslamî bi mifah wergirtin ji terîbonên kevneşopiye xwe di çaxekê de bi karê dijware gazî kirina xelkê bo pişikdarî kirin di meşa "Roja Komara Îslamî" mijûl in ku di sala derbas bûyî de hêzên Întizamî, leşkerî û Êstixbaratê bo parastina tenahiya welat, pêşgîriyê ji hemû terze civînan, heta boneyên werzişî, hunerî û sinfî dikin, ta ku nerazî bûna xelkê kifş û eşkere nebe.

Ewa ku salvegera ava bûna Komara Îslamî di dehsala duyem ya temenê hikûmeta Olî a Îranê hêdî - hêdî li kar xist, ji sernekevtinên hikûmeta Weliyê Feqîh di hemû warên siyasî, aborî, civakî, çandî û bê bersiv mana xwastikên nûxwaz û azadîxwazane ku nifşê nû û ciwan yê Îranê di delîv û derfetên cur bi cur di gel hemû asteng û berbendên hikûmetê karîne wan bînin ziman.

Herifîna Yekîtiya Soviyet û ava bûna komarên alîgirên bajêrvaniya Rojava li Bakurê Îranê û guhartinên ku piştî bûyera 11'ê Septembra 2001'an di siyaseta cîhanî derketin rojevê û bi damezrandina hikûmeta nû li Rojhilata Îranê (Efxanistan) qewimî û aqibet êrîşa hêzên hevalbend bi serokatiya Emerîka bo Îraqê û ji holê rakirina dîktatoriyeta Sedam Husên û bingehên Partiya Bees ji aliyekê û pêlên nerazî bûn û dijberî kirin tevî sîstema Îsalmî a Îranê û demokrasî û azadîxwaziyê li hundirê welat û rewşa pir aloz û xirabe welat di hemû warên jiyanê, hikûmeta Îslamî a Îranê bi rewşek hesas re rû bi rû kiriye.

*Jêder: "Nîv Sede Têkoşan", Ebdula Hesenzade.*

# Li Serdeştê ciwanek Kurd bi destê hêzên rejîmê hate kuştin

Roja duşemî 17ê Xakelêweya 1382'e Rojî, komek ji xelkê kasibkare gundê Binexelef a herêma Serdeştê ku bi merema misoger kirina hewceyî ên malbatên xwe berê xwe dabûne herêm ên tuxîbdare Kurdistanê, di dema zivirînê de, ketine nav kemîna hêzên talançiye rejîmê û di encama êrîşa wan dijîgeliyane de xortek bi navê Rehman Xizrî kurê şehîd Mihemed Xizrî kete nav çem û mixabin jiyana xwe ji dest da. Piştî 3 rojan meytê navbirî di wî çemî de hate peyda kirin. Piştî hingê xelkê nerazî yê gund, di nava kerb û kînekî zor de, meytê navbirî li rex kêla babê wî teslîmî axê kirin.

Hêjayî gotinê ye ku babê navbirî di nav refên PDK Îranê li çepera xebat dijberî rejîma kevnarperwer a Komara Îslamî de hate şehîd kirin.

# Demokrasî, biha û piraktîka wê

**Beşa 3**

Kurmanc Hakkî
kurmanc@dengekurd.com

## Demokrasî û hikûmeta gel

Me li beşên berê de bi kurtî li ser wateyên demokrasiyê û dîroka demokrasiyê axivî. Di vê beşê de em dê ser mijara demokrasî û deshilata gel rawestin.

Li 200 salên derbas bûyî de wateya demokrasiyê berfirehtir bûye. Her di vê demê de jî wateyên cur bi cur li gor rewşa civakî û rewşenbîrî û aboriya civakan demokrasî ji aliyê civakên cuda cuda bi wateyên cuda hatine şirove kirin. Ji hemûyan giringtir sîstema demokrasiyê ye ku dibêjinê **demokrasiya Rojava** yan ***civaka demokratîk***. Gelo mebest ji civaka demokratîk çiye? Demokrasî li bingehê de wek deshilata xelk hatiye wata kirin. Di vê beşê de ji bona rohn kirina wê wateyê em dê li ser netewe û deshilatê rawestin:

## Wateya xelk (demos)

Demos yan netewe bi hejmarek diyarîkirî ji mirovan tê gotin ku xwediyê hinek mafan e li deshilata siyasî de, wate beşdariya kolektîv li biryardanê de. Li diyarî kirina wateya netewe yan xelkê hinek pirsyarên serekî hene ku diviya bên bersiv dan: Berî gişkan pêvajoya havwelatîtiyê (citizenship) çawa tê diyarî kirin? Ji bona vê ku bizanibin çi kes yan kesanek mafê hevwelatetiyê hene, çi pêşmerc hatine danîn? Ya du dûyê hevwelatî hetanî çiqas mafê wekhevî bo van hatiye diyarî kirin? Cîh û pileya her hevwelatiyekê di biryardana demokratîk da ta çi qasê ye?

Li demokrasiya kilasîk ya Atênê de, tenê mêrên serbeste serewey temen 20 salî dikaribûn beşdarê biryardanê bikin. Jinan, kole û Berberan mafê dengdanê yan havwelatîtiyê nebûn. Li Demokrasiya Atênê de mafê wekhev bo hemû wan kesan ku hevwelatî bûn hebû, lê mirovên din, ku li serwe hatin amaje kirin ji wê mafê bê behre bûn. Li sedeyên nawerast yên berê Rênesansê li Svîsê ew mêrên ku dikaribûn çek helgirin mafê beşdarî li civînên xelkê (Landsgemiende) û biryarê de hebûn. Li 1600 li mafê dengdanê bo hemû mêrên serbeste rûniştivanê kolonên Ingîlteraya nû hebû. Li Birîtaniya nû û Welatên Yekgirtiye Amerîka ku wek mînaka Demokrasiya cîhanê tên nas kirin, berê mafê dengdanê tenê bo wan kesane bû yên ku mêr û dewlemend (zengîn) bûn. Li demokrasiya piştî şoreşa 1789 mîna Amerîka û Birîtaniya bû. Jinan li destpêka sedsala 19. de mafê dengadanê bi dest anîn û karîn beşdarî biryardanê biken.

Herçend yek ji pêşmercên beşdarî kirinê li biryarên demokratîk da mafê hevwelatîtiyê ye, lê di serdemê me de pirsgirêka mezin li piroseya biryardanê de ji bilî wê yekê edalet û şeriyeta (Legitimacy) şêwaza biryardanê ye. Demokrasiyên kilasîk bala xwe bo wê mesele nedikişand, jiber ku hewceyiyek wilo nedihat seh kirin. Lê di serdemê me de mafê xwe birêvebirina hevwelatiyan (xudmuxtarî) û beşdariya rasterast beşek giring li edaleta demokratîk tê dîtin.

Lêkolînerê ramyarî John D. May (1978) dema analîz kirina wateya netewe, wê yekê bi 2 bêşên nawçeyî û îdarî dabeş dike. Mebest ji mafên nawçeyî ku di rastî da naveroka wê demokrasiyê ye ya ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ji bo çareser kirina pirsgirêkên neteweyî û siyasî pêşniyar dike ewa ku rûniştivanên deverekê li gor hinek pirensîbên hevbeş xwediyê hinek mafên nawçeyiye negore xwe bin. Pênaseya han bo birêvebirina kar û barên nawçeyî li welatên cur bi cur bi gor dabeşkirina deshilatê bo bajar, parêzgeh, nawçeyên xudmuxtar yan dewletên federal bikar tê. Ji bo parastina mafên nawçeyî hewce ye piştgiriya yasayî wek bi fermî nasîna wan yasyane di distûra bingehîne welat de heye.

Li gor gotina May biryarên nawçeyî diviya bersiva hewceyiyên rûniştivanên wê deverê bide ku pêwendî bi wana ye. Li gor wê şirove kirina piraktîk li demokrasiyê hevwelatî ew kese ye ku biryara siyasî pêwendî bi wî heye. May dîtina xwe bi vî awayî rohn dike ku demokrasî ne tenê di nav civakê de belkî di nav sazî û komeleyan de jî hewce ye. Demokrasiya bi wî awayê li serdemê me de jî basa rojeva pirsgirêkên navneteweyî ye. Di serdemê me de biryarên siyasî li çarçova sinûrên yekeyên (wahid) siyasî tenê namînin û biryarên han kar dikene ser deverên berîntir û biryarên deverên din kar dikene ser çarçoveyên diyarî kiriye siyasî. Lewma vê demokarsiyê jî hinek kêmasiyên xwe hene. Bo nimûne eger em kardanewa (teisîr) biryarên siyasî û çarçova wana bi bingeha pênasekirina xelkê dabinên vê demê gelek giriftên mezin li şêwaza biryardanê û diyarkirina sinûrên nûye siyasî ku diviya zû zû bihên guhorîn. Lewma di demokrasiya rasterast de diviya *çawaniya* (quality) kardanewê û biryarê bihên diyarî kirin. Ji ber giriftên teorîk û piraktîke demokrasiya rasterast (functional) diyarî kirina nawçe û deveran vê bibe yek Ji giriftên herî mezine dewletan ku diviya çareseriyek yasayî bo bihê diyarî kirin.

Li pênase kirina netewê da, em dikaribin pîwanên berfirehî (inclusive) û bertengayiya (exclusive) mafên hevwelatiyan jî berçav bigirin. Demokrasiya Atênê ya antîk demokrasiyek berteng bû, ji ber ku mafê hevwelatî bûnê tenê bo girûpek biçûk ji mirovan hatibû nas kirin. Bi watayek din tenê beşek li rûniştvanên Atênê li biryardanên kolektîv beşdarî dikirin.

Demokrasiya nû li ser bingeha berfirehî dihê şirove kirin bi wê wateyê ku mafê dengdanê bo hemû wan hevwelatiyên balixe bê berçav girtina regez, cins û ziman û endam bûn li qatek (çîn) taybetî. Ew pênaseye bingeha ji vê bingehê dest pê dibe ku mirov bi awayek wekhev hatiye cîhanê û nirxên mirovan diviya wekhev be. Feylesofê Birîtanî John Lockea (1630 – 1704) bi damezrênerê vê hizrê dizanin ku li gor wî her kesê li mêzegeha olê Fela (mesîhiyetê) mirovek ku ji dayik dibe, hinek mafên destpêkî hene ku kesek nikaribe ji wî bistîne. Feylesofê Ferensî Jean Jacques Rousseau bi vê bawerê bû ku mirov dema ji dayik dibe, li gor sirûşt wek hev e. li gor wî şaristaniyan ew heqê sirûştiye mirov li mirov sitandiye.

Her dû feylesofên navê wan hatî birin di vê bawerê de bûn, ku

## Doma: Demokrasî, biha û piraktîka wê

dewlet dibe mafê wekheviyê bo hemû wan hevwelatiyana berçav bigire ewên ku biryar kar dikete ser çarenivîsa wana. Lê digel wê jî ji bo wana nemaze Rousseau ne giring bû jin bi hevwelatî tên nas kirin yan ne. Lockea ji bilî jinan kole û mirovên nivîşkan jî ji dervey mafên wekhev dizanî. Bi vî awayî hemû ew wateyên demokrsiya berfireh li çarçova diyarî kirî de hat bertesk kirin.

Lêkolîner û siyasetvanê Emerîkî Robert Dahl mafên siyasî bi dû desteyên bêmerc (Categorical ) û sinûrdar (Contingent ) dabeş dike. Li gor şiroveya bêmerce demokrasiyê mafê siyasî ji bo her kesekê bê pêşmercan diviya bên. Demokrasiya mercdar jî ewa ku bo nimûne em mafê dengdanê tenê bo wan kesan bi fermî binasibin ku bikaribin bixwînin û binivsînin. Yan tenê mêrên serewey 20 sal mafê dengdanê hebin. Ligor wê yekê tenê ew kesane dikaribin mafê siyasî hebin ku kêrhatiyê (şaiyawî) kar û barê siyasî be. Pirsyara mezin eva ye erê gelo mirov çewa vê bikaribe kêrhatîtiya kesek din diyarî bike.

Li haletek herî xirab deshilatdar dê bi keyfa xwe û li gor berjewendiyên xwe yên siyasî dê *kêrhatîtiyê* diyarî biken û bi vî awayî mafê piraniya xelkê li beşdarî li piroseyên siyasî berbest bike.

Herçend şêwaza merciye demokrasiyê cîhê pesende piraniya welatên demokratîk nine, lê li demokrasiya bêmerc jî mafên hemû mirovan nayê berçav girtin. Cîhana demokratîk gelek caran pêpes kirina mafê jin û zarokan û her wisa bertesk kirina mafê piraniya mirovên balix li welatên din de bi karek asayî dizanin û tu gavekê ji bo pêşgîrî ji pelixandina mafên mirovan hilnagirin.

Mirov dikare pirsa xelkê (demos) li vê mêzegehê jî bibîne ku bizanibe çiqas mirovan mafê beşdarî ji biryardanê de heye û hevwelatiyan bi awayekî wekhev îmkana beşdarî li piroseyên biryardanê de hebe û biryarên hatî dan bi awayekê wekhev hemû hevwelatiyan bigire. Li gor hinek lêkolînerên Rojava, piroseya biryardanê dikaribe demokratîk be bêy ku edaletxwazane bit. Wate bêy ku mafê wekhev bo hemûyan hatibe bi fermî nasîn. Tirkiye bo wê yekê mînakek baş e. Piraniya biryarên wî welatî demokratîk in, lê li derevey berçav girtina mafên wekhevî bo hemû hevwelatiyên Tirkiyê.

Bi kurtî mebest ji wekheviya siyasî eva ku hemû hevwelatî bi awayeke wekhev bikaribin li piroseyên biryardanê de beşdar bin. Mafê wekhev li demokrasiyê de tenê bi wateya beşdarî li dengdanê de nine, belkî mebest eva ku mafê hatin hilbijartinê jî bo hevwelatiyan bi awayek wekhev bê parastin.

Di hejmara dahatî de em dê ser mijara demorkasî wek bingeha deshilata gel rawestin.

## Feraksyona Kurd a Meclîsa Şêwra Îslamî di nameyekê de daxwaza azad kirina Leyla Zana yê kir



Endamên Feraksyona Kurd di Meclîsa Şêwra Îslamî de ji serokatiya Perlemana Ewropa xwastin ku ji bo azadiya Leyla Zana endama Kurde Parlamena Tirkiyê bixebitin. Di wê nameyê de hatiye ku yek ji hevkarên we û me bi navê Xatûna Leyla Zana, heyamê 10 salan e ku di girtîgeha Tirkiyê de hatiye hepsî kirin. Wê tenê daxwaza wekhevî bûna mafê wan kesan kiriye ku nûnerê wan e û cehd kiriye ku çanda neteweya xwe biparêze. Erê gelo nûner, ji bilî vê çendê erkek din jî heye?

10 sal ji baştirîn salên temenê wê parêzvan û nûnerê gel li girtîgehên Tirkiyê de bi heder çû, erê gelo ew qas destdirêjiye bo ser mafê mirovan bes nine? Ew jî di serdemekê de ku Tirkiye dixwaze biçe refa welatên Yekîtiya Ewropayê. Em endamên Feraksyona Kurd di Meclîsa Şêwra Îslamî de, di pêxema berevanî kirin ji mafê wê nûnera azadîxwaz û ew kesên ku Leyla Zana nûneratiya wan dike, ji we û hevkarên birêze we li Parlamena Ewropayê de daxwaz dikin ku bi gavên Parlamenterî û micit ji bo azad kirina wê li girtîgeha Tirkiyê de bitaybet di wan rojane de ku Tirkiye dixwaze here nav Yekîtiya Ewropa jî, bixebitin.

## Talançî ên rejîmê di gundên "Zirşiwan" û bajarokê Şahîndijê de

Li gundê "Zirşvan" a ser bi herêma Tîkabê, rejîm mijûlî kar kirin li ser çavkaniyeke Zêran e ku li gor nûçeyan, her salê 8 ton hesinên binirx jê tête berhem anîn. Heta çend kompaniyayên biyanî jî kar li ser dikin ku yek ji wan kompaniyane, Qtrîşî e. Hejî gotinê ye ku kargeha helandin û cihê kar kirin li ser vê mewada xam li bajarê Zencanê ye û xelkê hejare vê deverê neku wek karker di wan çavkaniyan de nahêne wergirtin, belku mafê vê çendê çininin ku bi derdora wan de jî hat û çûyê bikin.

Her di dirêjiya vê nûçeyê de hatiye ku, 10 sal berî niha li nêzîk bajarê Şahîndijê, kevalek hatibû çeqandin ku li ser hatibû nivîsîn, kargeha sîman a Şahîndêj, lê belê niha eşkere bûye ku ew cihe çavkaniyeke bihagiran a keviran e û xwediyê îmtiyaza vê jî Axayê Refsencanî ye! ku her niha jî mijûl in kar li ser dikin û berhemên vê jî dişînin bo bajarê Urmiyê.

## Li Seqizê karmendên nexweşxaneya Xumeynî hatin der kirin

Li gor nûçeya şîrketa "Xerbkar" 43 kes ji karmendên nexweşxaneya Xumeynî a bajarê Seqizê hatine derêxistin û herwisan 56 karmendên din jî ku her yek ji wan zêdetir ji 12 sal e di vî cihî de şol dikin, gefa derkirinê li ser wan e, her qas ev karmendane îdara şolê derheq bi vê çendê pê hesandin e, lê mixabin niha jî çi bersivek bi wan nehatiye dan.

# Naveroka tewawe terhê Amerîka ji bo "Rojhilata Navîn a mezin"

Wergerandin ji zimanê Farsî: Selîm Zencîrî

Terhê naskirî bi "Rojhelata Navîn a mezin" ku ji aliyê karnasên saziyên vekolînê ên Amerîkayê hatiye darêtin û hikûmeta wî welatî jî pejrandiye, xwediyê merem û armancên siyasî, aborî, çandî û civakî ji bo welatên Rojhilata Navîn bi taybetî welatên Erebî ên vê deverê ye. Hatiye gotin ku amar û serhijmêrî ên navhatî di vê terhê de li gorî rapora berhev kirî ji hêla karnas û xwedî hizrên Ereb e ku di rapora geşandina mirovî a sala 2003'e Zayînî a Rêxistian Neteweyên Yekbûyî wek sened mifah jê hatiye wergirtin. Hikûmeta Amerîka ji bo hevterîb kirina 8 welatên pîşeyî li gel xwe, qirar e vê terhê li rûniştina Cozerdana sala tê ya van welatane de bîne ber bas, da ku welatên navhatî û Amerîka siyaseteke rêveberiya hevpar derheq Rojhilata Navîn li pêş xwe bigirin. Eva ku di xwarê de hatiye naveroka tewawe terhê Amerîkayî a "Rojhilata Navîn a mezin" e ku rojnameya Elheyat weşandiye û Waşengtonê jî îdiaya vê hindê dike ku bi micitî xwazyarê rêvebirina wê di vê devera girîng û muqedersaz li cîhanê de ye. (Îrna)

**Naveroka terh**

Ev terhe rê çareyeke girîng, jêhat û delîveyeke baş e ji bo civaka cîhanî da ku li ber ronahiya wê, derheq bi çareseriya du kêmasî ên girîng li welatên Rojhilata Navîn wek zanyarî di warê hewceyiya nihadîne bûna, çemka azadiyê û ya duyan afirandina cihwarek kêrhat ji bo pişikdariya jinan di geşandina siyasî, civakî û çandî de, dibe gav bihên avêtin. Heta çaxekê ku siyaseta dûr kirina xelkê ji tekoşînên siyasî û aborî di Rojhilata Navîn de ber bi zêde bûnê biçe û navendên deshilatê tenê di bazneyeke daxistî de bimînin çalakiyên terorîstî, qasê sûç û cirm û koçberiyên ne yasayî bi welatên Rojavayî dê zêdetir bin.

Li gor serhijmêriyên weşandî, rewşa civakî, aborî û çandî li welatên Rojhelata Navîn rêyeke dijwar û pir xof dipîvin, lewma îro rojê hewceyiya peyda kirina rêçareyan ji bo çareseriya wan zêdetir ji her gaveke din pûte heye. Bi mêze kirin bi serhijmêriyên jêrîn rewşa nebaşe van welatane bi başî derdikeve.

*Sercem dahata nexalise miliye 22 welatên Erebî zor kêmtir ji welatê Îspanyayê ye.

*Ji sercem 163 milyon kesên jorî 18 saliyê, li welatên Erebî de nêzîk bi 65 milyon kesî yanî nêzîk bi 40 ji 100'ê nexwande ne ku du ji sê a vê qasê jin pêk tînin.

*Heta sala 2010'e Zayînî pitir ji 50 milyon ciwan dê têkilî bazara şolê bibin û heta sala 2020'ê Zayînî jî welatên Erebî ji bo ciwanên bêşole xwe pêwîstî bi pêk anîna 1 milyon delîveyên şolê hene.

*Eger qasê bêkarî di walatên Erebî de bi vî awayî dom bike heta sala 2010'ê Zayînî hejmara bêkaran di van welatane de dê bigihîje qasê 25 milyon kesan.



**Hiloşîna du rejîmên dîktator li Îraq û Efxanistanê de delîveyeke bê mînak ji welatên pîşeyî ên Rojavayî re pêk aniye da ku rêveberiya bizava guhartinê di welatên Rojhilata Navîn de bi destve bigirin**

*Nêvinciya dahata yek ji sê'ye welatên Rojhilata Navîn ji 2 Dolaran di rojê de derbas nabe, lewma ji bo baştir bûna rewşa jiyana van welatane pêdeçûna bi ser piroseyên mezine aborî de hewce ye.

*Tenê 1/6 ji sedêye xelkê welatên Rojhilata Navîn dikarin mifahê ji tora înternêtê wergirin ku ev hejmare di daneberhev di gel welatên Afrîqayî yên li halê geşe û xurt bûnê de jî kêmtir e.

*Di rewşekê de ku tenê 3/5 li sedê ji kursiyên Parlamenên welatên Rojhilata Navîn taybet bi Jinan in, ev hejmar di welatên Afrîqayî ên ku ber bi geşandinê ve diçin digihîje 8/4 ji sedê.

*Li gor nirxandina zanistî û xwedî hitbare cîhanî li sala 2003'e Zayînî 51 ji sedê ye ciwanên Ereb xwaziyarê koçberiya hertimî bi welatên Ewropayî ne. Bi dom kirina siyasetên nihoyî di hemû warên siyasî, aborî û civakî de emê şahidê ji nav çûna zaf ji van welatane û zêde bûna hejmareke zafe wan bi koma bêkaran û xurt bûna roj bi roj zêdetire belengazî û desttengiya xelkê bibin ku ev rewşe dikare di pêşerojeke ne hinde dûr de bibe bi tirseke mezin û bingehîn ji bo civaka cîhanî. Tenê Rêçare ji bo derketin û neman ji bazneya girêdayî a destengî, belengazî û paşverûyiyê, birêve birina guhartinan di hemû waran de û birêve birina encamên vekolînên karnasan û zanîngeh yan ji aliyê hikûmetên Ereb e. Di vê navberê de pişikdariya aboriya welatên qirax Behra Midîterane, terhê pişikdariya welatên Rojhelata Navîn û Amerîka bi merema rêveçûna guhartinên bingehîn û têkoşînên ku ji bo sertaze çêkirina Efxanistanê û Îraqê têne kirin hemû parek ji siyasetên bêsînore 8 welatên pîşeyî ên cîhanê ji bo derketin ji rewşa xirab û aloze di welatên Rojhilata Navîn de ye.

Hiloşîna du rejîmên dîktator li Îraq û Efxanistanê de delîveyeke bê mînak ji welatên pîşeyî ên Rojavayî rê pêk aniye da ku rêveberiya bizava guhartinê di welatên Rojhilata Navîn de bi destve bigirin. Welatên pêşeyî ên Rojava bi danîna piroseya geşandina mirovî a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî li dirêjiya karê xwe dibe ji bo cihgir kirina guhartinan di Rojhilata Navîn de çelengiyeke micit û bibandor hebin. Tagirî ji cihgir û cî bi cî kirina pirensîpên demokrasiyê û hatine ser karê hikûmetên hilbijartiye xelkê, rê xweş kirin ji bo xurt kirina zanist û teknolojî di civakên Rojhilata Navîn û pêk anîna delîveyên jêhate aborî ku berjewendiyên dirêjheyame van welatane misoger bike, parek ji kiryarên welatên pîşeyiye Rojava di vê hewzeya girîng û zêrîn ji cîhanê pêk tînin. Li gor piroseya

"Rojhilata Navîn a mezin", welatên Erebî li warê azadiyên civakî bi taybet azdiya bîr û ra eyan kirinê di berhevdana tev welatên cîhanê di nizimtirîn qasê xwe de ne. Ji bo pêk anîna guhartinên bingehîn di civaka Erebî de, 8 welatên sanatiye cîhanê dibe cihgir kirina demokrasiyê û hewcehiya rêvebirina bingehên demokrasiyê di welatên Erebî de li berçav bigirin. Welatên pêşverûye Rojava ji bo rêvebirina hilbijartinên azad dikarin ezmûn û tecribeyên xwe di warê birêvebirina hilbijartinên salim û dûr ji dexelî û fend û fêlan danêne xizmeta van welatane de. Zêdebarê vê çendê jî baldan bi rola kêmrenge jinan di meclîsa nûneratiya van welatane de mirov dikare saziyên ne dewletî bi armanca nasandia jinên zanîngehan bi merema daxwaza mafên siyasî û civakiye xwe, ava bike. Li gor rapora geşandina miroviye Neteweyên Yekbûyî ji bo her hezar hevwelatiyên Ereb tenê 53 hejmar Rojname hene û eve di demekê de ye ku di welatên pêşverû de ji bo her hezar kesan 258 hejmarên Rojnameyan hene. Di vê pêwendiyê de weşandina belavokan di welatên Erebî de xwediyê çavkaniyên nizm in. Piraniya ragehandinên van welatane di bin rikêfa beşa dewletî de ne. Ev hejmara herî kême ragehandinan ku ser bi beşa taybetî ne jî di bin zêrevaniya hikûmetê de dixebitin.

Bi vî awayî pirogramên ragehandinan ( dîdarî- guhdarî – nivîsarî) di van welatane de, piropagendeyeke bênaverok û tenê bi merema bandor danan li ser bîr û raya giştî ye. Rapora geşandina miroviye Rêxistina Neteweyên Yekbûyî ji bo berhingarî kirin tevî vê arîşe û pirsgirêka girîng rêçareyên xwarê dayne xuya kirin.

*Encama seferên dewreyî ên nivîskar û xwediyê belavokên welatên Rojavayî û Erebî

*Birêve birina zandorên fêr kirinê bi merema hînkirina rojnamevanên serbixwe

*Mifah wergirtin ji borseyên xwendinê di welatên Rojavayî de bi merema şandina rojnamevan û xwwndekarên mijûlî xwendinê di vî warî de bo navendên fêr kirinê a welatên Rojavayî

*Li gor rapora Banka Cîhanî, gendeliya îdarî, malî û aborî sedema here girînge geş û xurt nebûna welatên Erebî ye. Lewma siyaseta zelal û ron kirinê û xebat dijberî genîtiyê di warên siyasî û aborî hewcehî bi bername darêtineke mezine aborî di van welatane de hatiye zanîn. Çeleng kirina rolê sazî û girûpên berevane mafên mirovan, standina girintiyên pêwîst ji hikûmetên Ereb di warê azadiya kiryarên ragehandinên giştî, rê xweş kirin ji bo pişikdariya jinan di hemû warên civakî û pêk anîna guhartinên bingehîn di dezgeha dad û edaletê de ji xalên din yên îşare pêkirî di vê terhê de ye.

Di pêwendî tevî mijara çap û belavkirina pirtûkan jî hatiye ku welatên Erebî di sala 2003'ê de tenê 1/1 ji sedê ji berhem anîna pirtûkan di cîhanê de bi xwe girtine ku di vê navberê de 15 ji sedê ji tewahiya weşandina pirtûkan di van welatane de taybetî bi fêrkirina pirtûkên olî ne. Eve di rewşekê de ye ku welatê Yûnanê tenê bi hebûna 11 milyon xulyaqetê 5 hindî 22 welatên Erebî pirtûkan diweşîne ku ev yeke, qasê paremayiya van welatane dide eyanê. Serbarê vê hindê ku 65 milyon kes ji xelkên ku jiyê wan serweyî 18 salan e di welatên Erebî de nexwande ne, welatên sanatiye cîhanê dikarin ji bo xebat dijberî mijara nexwandewariyê ji îmkanatên heyî di torên înternêtê de mifahê wergirin. Bi vî awayî tevî birêve birina wan armancan bi kiryar ji qasê nirx û bihaya van jî kêm bikin. Welatên Rojavayî dibe hevkariya hikûmetên Erebî bikin ji bo berhev kirina terhên xebat bi dijî nexwandewarî û hîn kirina kadrên pêwîst di vî warî de.

Ji bo îslaha pêkhata fêrkirinê, dibe pêş civîna Avrîla îsal ku bi merema berhevdana bernameyên fêr kirinê di civakên Rojhilata Navîn de bi pişikdariya xwedîhizr û karnasên deverî, Ewropayî û Amerîkayî dê birêve biçe rêçare bêne peyda kirin. Her çend mifah wergirtin ji înternêtê di welatên Erebî de di berhevdan di gel welatên dinê ye cîhanê di nizimtirîn qasê xwe de ye, welatên pîşeyiye cîhanê dibe derfeta alîkariya pişkên hikûmî û şexsî ji bo xurt kirina mifah wergirtin ji înternêtê di gund û bajarên Rojhilata Navîn de biafirînin. Di vê navberê de welatên Îraq û Efxanistan, Pakistan, Yemen, Sûriye, Lîbî, Mexrib, Mîsir, û Elcezîre di daneberhev tevî welatên dinê ên Rojhilata Navîn kêmtirîn mifahê ji înternêtê werdigirin. Bi baldan bi hewcehiya fêrkirina rişta kargêrî di civakên Rojhilata Navîn de, welatên pêşeyiye cîhanê dibe devreyên fêr kirina yek sale ji bo xwendekarên vê riştê pêk bînin ku di vê navberê de mirov dikare navenda fêrkirina kargêrî(modîriyet) û bankdariya di welatê Behrênê de bike mînak û berjeng. Di rapora geşandina miroviye Erebî a Rêxistina Navneteweyî di warê berhev kirin a delîveyên şolî hatiye ku kite rêçareya pêşerûya welatên li halê gaş û xurt bûna Rojhilata Navîn geş û xurt kirina rola beşên taybetî û bi mînak danîna siyasetên aboriye Rojhilatê Ewropayê piştî hiloşîna cemsera Rojhilat (Bilûka Şerq) dibe. Ava kirina sindoqên geşandina deverî mîna banka "Omran" û "Tosieya" Ewropayî di welatên Rojhilata Navîn de bi merema sermaye danîn di warê avedan kirin (jêrxanî), hîn kirin, saxlemî, pêk anîna guhartinên bingehî di sîstema maliye van welatane de û kêm kirina rol û destêwerdana hikûmetan di birêve birina piroseyên aborî, nû kirina sîstema bankdariyê û kêm kirina astengên gomrikî ji rêyên dinêye derkirin ji paşverûyiya aborî li welatên Rojhilata Navîn hatiye beyan kirin. Bihêz û xurt kirina benderên azade ticarî, hevpişk kirina sermayedarên biyanî di birêvebirina terhên mezine aborî û pêk anîna rûniştin û civînên aborî bi pişikdariya berpirsên pişkên dewletî û taybetî yên welatên Rojhilata Navîn ji bo berhevdana rêyên rêvebirina guhartinên aborî roleke girîng di piroseya pêşeroja aboriye van welatane de dê hebe. Di piroseya "Rojhilata Navîn a mezin" de îşare hatiye kirin ku welatê Efxanistan, Elcezayir, Behrêyn, Mexrib, Lubnan, Qeter, Tûnis, Tirkiye û Yemen pêvajoya birêvebirina hilbijartinan û peyrewî kirin ji dengên giştî didomîn in. Li gor vê terhê welatên Elcezayêr, Lubnan, Erebistan û Yemen daxwaza endam bûn di Rêxistina Ticareta Cîhanî de kirine û welatên Efxanistan, Lîbî û Sûriyê hêşta pirsa daxwazkariya endam bûna wan di vê saziyê de, neketiye ber bas û lêkolînê û Îraqê jî daxwaza pişikdarî di rûniştinên vê saziyê de weke endamê zêrevan kirî ye.

**Ji malpera "iran emroz" hatiye wergirtin.**

# Bandora deshilta dewletan li ser xwekujiya Jinan di cîhan û Îrana Îslamî de

Dara Nartiq
Dara_enzeli@yahoo.com

Di sedsala 21'an de, xwekuştin li welatên cîhana sêhem û bi taybet Îrana bin deshilata Komara Îslamî de, bûye mijarek haşahilnegir û arîşeyeke edetî û rojaneye civaka Îranê, û mirovên vêzar ji jiyanê zor bi hêsanî hewara xwe bo vê kiryarê dibin. Di rastî de xwekuştin bo wan kesên ku bi hizr û xeyalên xwe li jiyanê vêzar bûne û gihîştine binbestê, weke penageha herî dawiyê tê hesibandin.

Xwekuştin tenê di welatên cîhana sêhem de tiştekî edetî nine, ji ber ku di welatên pêşkevtî de jî ev bûyere di nava xelkê de tê xuya kirin. Bo mînak xwekujî li welatên wek: Amerîka, Îngilistan û welatên dinêye Ewropa, zorin.

Mirov bo xwekuştinê zêdetir ji xweşevitandinê mifahê werdigirin, lê belê di welatên pêşkevtî de, zaf bi kêmî bo xwe ji nav birinê, ji vê rêyê mifahê werdigirin. Zêdetir ji çek, xwefiredan ji bilindahiyan û xwe darvekirin û derman xwarinê û … mifahê werdigirin.

Xwekuştin û xwe ji nav birina mirovan û bi taybetî jinan, dizivire ser zaf heger û sebebên di nava hikûmetên deshilatdar û rewişt û tîtalên kevneşope civakî û malbatî de. Bo nimûne: Apartayda cinsî di nava dezgeh û binyatên dewletî û malbatî da, zal bûna rewişt û tîtalên paremayî di nava malbat û civakê da, seh kirina jinan bi bêmafî û bê hurmetî pêkirin bi wan di encama zal bûna "ferhenga mêrsalarî" de, girêdayî bûna jinan li warê aborî ve bi malbat û mêrên wan, bêşolî, tûş bûn bi nesaxiyên xemokî û rewanî ên cur bi cur, tepeser kirina hêvî û xwestikên wan û cihgir kirina hin madeyan di yasaya welêt de ku li xizmet berjewendiya jinan de ninin û …, hemû ev arîşe û girêpêçkên cur bi cur li serhev kom dibin û dibine sebeba afirandina wan cure bûyerane.

Yek ji fakterên herî bingehî ku dikare bandoreke baş yan xirab li ser rewşa jinan di civakê da hebe, curên hikûmetên deshilatdar û sîstemên siyasî û birêveberiye wan hikûmetane ye. Lewma divê em bizanin ku çi terze hikûmetek li ser kar e, gelo ev hikûmete demokratîk e yan hikûmeteke dîktator û xwe sepên e.

Tişteke edetî ye, hekî hikûmeta deshilatdar hikûmeteke demokratîk bû, diyare ku di wî welatî de demokrasî û azadiya kesî heye û zagon li serweyî hemû tiştekî ye. Li wan cure rejîmên ku demokratîk in tekoşîna rêxistinên sinfî mîna: Saziyên jinan azad in û jin dikarin di hemû waran de derkevin holê û xwe nîşan bidin û tevî mêran mafên birêvebirina postên girînge hizbî û hikûmetî hebin. Di wan cure sîstemane da ku demokrasî têda cihgîr bibe, hetanî qasekê zaf doza jinan tê çareser kirin.

Çaxekê ku jin di deshilata siyasî de pişikdar bin û mafê tekoşînên cur bi cur di welêt, mafê dengdan di hilbijartinan û azadiya derkandina bîr û hizran, mafê wekhev di kar de hebin, heta qasekê ev arîşe û girêpêçkane tenê çareser kirin û dibine hegera binbir kirina tund û tîjî û perçiqandin dijberî jinan û çareser kirina doza malbatan li hemberî jinan û…Hwd.

Lêbelê heke hikûmeta deshilatdar hikûmeteke ne demokratîk bû û meşrûiyeta hikum kirinê bi ser xelkê de çi nebû, eve neku tepeserî û bin pêkirina azadî û mafê jinan, belku piraniya wan tund û tîjî ên ne mirovî di wî welatî de geş û xurtir dibin, û civaka wî welatî jî ber bi alozî û paremayê ve dibet û berahiyê ji xelaqiyet û jêhatiya jinan di warên çelengî ên civakî, aborî, siyasî, çandî û wêjeyî de digire û jin nikare bi wî curê ku hewceye bi maf û azadiyên miroviye xwe bigihîjin.

**Şêwirmendên civakiye Rêkxistina saxlemiya Komara Îslamî, pirsa xemokî û hejariyê, yek ji pirsên herî bingehî ên xwekujiyê di navbera jin û mêran de binav kiriye**

Welatê Îranê jî, yek ji wan welatane ye ku jin bûne mezintirîn goriyên rewşa ne jêhate siyasî di wî welatî de. Rejîma deshilatdare Komara Îslamî di wî welatî de mezintirîn xedir derheq bi jinan kiriye û bûye berbend û astengek, di hember pêşkevtina wan de û bi birêvebirina wan siyasetên ne demokratîk û ne miroviye xwe bûne sebeb û hegera geşekirina çendîn nesaxiyên civakî mîna: Binpê kirina mafê neteweyî di vî welatî de, genitiya malî, tepeserî, eşkence, tund û tîjî, qeyrana aborî, kuştina jinan û anîna yasaya ferq û cudahî danîn di navbera jin û mêran de, bêkarî û kevirbaran kirina jinan û …hwd.

li gor serhijmêriya dawiyê ya rêkxistina saxlemiya cîhanî, ji her yek milyon kesan 16 mêr û 4 jin karê xwekujiyê dikin. Eve li demekê de ye ku li Îranê ji her sed hezar kesan 200 kes dest bi xwekujiyê dibin. Her çiqas serhijmêriyeke serrast di warê pirsa xwekujiyê di Îranê de ji ber destan nine, lê bi gor gotina Seyid Hesen Elm Elhidayî şêwirmendê civakiye saxlemiya welêt, hijmara xwekujan di navbera jinan de du beramberî mêran bûye. Piraniya mêrên ku xwe dikujin jiyê wan serweyî 40 salan bûye û di nava jinan de jî, piraniya wan jiyê wan di bin 20 salan de bûye.

Şêwirmendên civakiye Rêkxistina saxlemiya Komara Îslamî, pirsa xemokî û hejariyê, yek ji pirsên herî bingehî ên xwekujiyê di navbera jin û mêran de binav kiriye û her wisan bê şolî, qeyrana aborî, arîşên malbatî, nesaxiyên Esebî, Aîdz, seqetî ên cinsî, ixtiyar bûn, bîvejinî, îtiyad û hejarî û… ji hegerên herî bingehiye xwekujiyê li Îranê de hesiband.

Em dikarin bibêjin ku Komara Îslamî a Îranê bûye sebebê pişkeke herî zaf ji bêparî û çarereşiya jinan li Îranê û bi taybet di herêma Kurdistanê de. Her ji destpêka bi deshilat gehîştina Komara Îslamî a Îranê vere hetanî niha, di Îranê û bi taybet herêma Kurdistanê da, bê şolî, hejarî, tepeserî û tund û tîjî, zal bûna zêdetire rewişt û tîtalên kevin û "ferhenga mêrsalarî" bêdadî û newekhevî di Kurdistanê de geş û xurttir bû ye. Berahiya geşe kirin û pêşkevtina jinên Kurdistanê di warên siyasî, çandî, aborî û civakî de hatiye girtin. Li zaf herêmên Kurdistanê da, jin mîna rihberekî lawaz, sivik û bê pûyte tê çav lê kirin.

Lê belê astê ferheng û têgehiştina jinan jêhel çûye û wisan lê kiriye ku jin nekaribin hemû bê mafî û sivikatiyekê derheq bi xwe bipejirînin. Ew ji xwe dipirsin hetanî kengê dikarin bê qeyd û bend fermanber û birêveberê emrê mêran bin? Bêdeng bûn li hemberî estem da dijwar e, û rizgar bûn ji destê wan bîr û hizrên kevin de jî dijwartir e. Ev rewşa nejêhat bandora nerênî li ser hemû jiyana jinan didanê û wan tûşî nesaxiyên xemokî û rewanî diket û hindek ji wan wisan lê diket ku li cihê berxwedanî û sekinîn li hember wan tevijm û arîşe û girêpêçkane da, hewara xwe bo kuştinê bibin û weke rêyek bo xwederbas kirin ji arîşe û asteng û nerihetiyan mifahê wergirin.

**Bo serhijmêriyên gotarê ji Malpera Radyo Ferda mifah hatiye wergirtin.**

# Dibe her jinek aliyekî xweyî Femînîstî hebe

Mardîn Celal

Heta niha gelek kesan li ser şêwaz û qonaxên Femînîzmê nivîsîne û gelek jî xwe bi peyrewkarên vê hêlê dizanin. Di zor waran de teoriyên heme reng jê re hatiye danîn, û li gor ew rastiya ku sîstema zilam "Mêrsalarî" di çarçova welat û dewlet û malbatan de pêk aniye, li ser baskên radîkal û lîberal hatiye parve kirin. Serbarê ret kirina Femînîzm di cîhanê de, ew diyardên bi Femînîzm hatine nasîn, bi xwe Femînîzm e. Çunkî Femînîzm îdeolojî – kultur e û nûneratiya pêşeroja wan jinan e ku xwe gihandine astekî rewşenbîrî û bawerin ku nabe ji ber cudakariya cinsî, deshilata cîhanê tenê di destê cinsekê de be, ji bo deshilata takî pêwîst e têkoşînekî demokratîk were li dar xistin û jin jî bi zîhnyeta xwe pêşengiya şoreşa modernîzmê di prosesa vê têkoşînê de bike.

Li gor vê nêrînê, dibe her jinek aliyek xweyî Femînîstî hebe. Tam berevajî, ji ber nebûna vê bîr û hewldanê, ya xud tevlî nebûn bi bawerî û moralekî qahîm di vê şoreşê de rewşa jinekî mirî nîşan dide ku ji rewşa xwe û sîstemê, jî razî ye. Bêguman eve maskek nine ku mirova formalît diviya bikeve pey wê û navê wê ji xwe re tapo biket. Eve taybetmendiyek berçav e û di encama bandorên gav bi gavî yên jiyanê de ji dayik dibe û dema digihîje gupikê jî, êdî dest bi nîşandana çalakiyan dike. Bi bîr û îradeya xweyî, li ser çawaniya çalakî û diyarî kirina nêzîkatî û çemkên exlaqî biryar tê dayîn.

Helbet lêre de bangewaziya wêne nakim ku jin bibine Femînîstên îro, çunkî kultura Femînzm di bingeha xwe de gelek cudatir e ji ya ku di warê praktîk de, heta roja îroyîn hatiye, û bi şêwekî çewt xwe gihandiye Kurdistanê û di nav zemînekî na kamil de, xwe xistiye nav mejiyên keçikên me yên nakamil. Ez dibêjim gerek em jin, wek jin bifikirin û di bin navê **"Femînîst im"** bila em xwe nexapînin, û îdeolojiya Femînîzm û daxwaziyên xwe yên civakî tevlîhev nekin. Lêre de ew keçik têne rexne kirin ku wek (nuxbe, Elît) bi biyarekî nû ya jinan derketine pêş û li rêyekê digerin ku çawan bikaribin xwe li jiyana civakê vedizin, bêyî ku tu nirx û behayên civata mirovatiyê berçav bigirin, ew jî di bin navê ret kirina qaba yê zilamtî ye.

Ret kirina qaba û dijminatî kirinekî ne zanistî vedigere ser lawaz bûna kesayetî û xwe navend kirina balkişandinê. Hevdem gelek nimûneyên din hene derheqa wan zilamên xiyanet li jinên xwe dikin, bêyî bi tu helwestekî re rû bi rû bibin û îbret bibin. . . difirin û li ser çavên xanima Femînîst rûdinîşin! Dixwazim bêjim hizra azadiya Jinan û ferhenga Femînîzmê gelek ji wiya mezintir e ku qat û twêjek (lumpên) di bin navên cuda-cuda de disepînin û bi nasnameyekî saxte ya azadiyê ve amade ne her roj bi mêrekî re bijîn, tiştа bala mirov dikişîne, kesayetî nine, belkî



**Ji ber hebûna pirsgirêka neteweyî di Kurdistanê de, Jinên Kurd kêmtir derfet a misoger kirina pirensîpên Femînîstî hebûne**

ew keça ku di warê teorî ve di nav helbest û babetên xwe de di nav azadiyê de dikele û bi hemû rengan derî û pencerên xwe vedike, ji ber ku bêhna zilam di oda wî de nemîne, lê dema tek-tek mêr diçin bo wê nabêje "na, nehê hundir". Gelo êdî Femînîst bûna vê jinê li ku dimîne û azadî û jinîtiya wê ber bi ku diçe?

Di rastî de eve jî taybetiyeke û sîstema mêr wisan em elimandine ku tim di xalekê de binbest bimînin û xwe pê bixapînin . . . .. Lê kîjan jina Kurd heye ku xwedî têkoşînekî çir û pir be derheqa perensîpên Femînîzmê de? Bi nêrîna min, berî em bikevin nava rewşa dubare û teqlîdkariya herifî ya eniyên Rojava, dibe yekem gavên xwe di wê meydanê de datînin ku navê wê Kurdistan e û di Kurdistanê de jî ji ber kêşên neteweyî, pirsa ji hilavîstî ma ye ji ber viya ava kirina sîstemek di êxsîrê dayik de, tenê bi gotin û xwe xapandinê nabe, eger hemû cinsa din jî li dû xwe ber bi evraza civakeka medenî nekişînin û bi awayê civakekî taze xwe ava nekin, wê gavê gelek sext dibe. Eva jî pêwîstî bi rawestan û helwestekî taybetiya jinane heye, ne rewa kirina peyv û bergên berîqedarên bê naverok, ku peykera kulturiya civakê dişkîne.

### Xwendekarên Zanîngeha Urmiyê meşeke nerazî bûnê li darxistin

Xwendekarên Zanîngeha "Fenî Hirfeyî" a bajarê Urmiyê nerazî bûna xwe derheq rewşa nebaşe sîstema elimandina wê Zanîngehê û pûyte nedana karbidestên wê bi kar û barên xwendekaran roja sêşemiyê 27.4.2004'e Zayînî nerazî bûna xwe dan xuya kirin û xwepêşandan li darxistin.

Xwepêşandan di salona Xwaringeha Zanîngehê dest pê kir û paşan hewşa zanîngehê jî girtin û bi avêtina dirûşman ber bi şeqama eslî (Cadeya Sêroyê) meşiyan ku hat û çûna tirimbêlan hatibû sekinandin. Zêdetir ji 1000 xwendekar tevlî meşê bibûn. Di vê demê de hêzên rejîmê rijiyane nav meşê û tund û tîjî di navbera wan de dest pê bû ku 5 xwendekar hatin girtin û destê xwendekarekê jî hate şikandin. Di wê tevçûnê de 2 tirimbêlên rejîmê hatine şewitandin. Dema hêzên rejîmê dîtin meş mezin û berfirehtir dibe, paşde wekişiyan û daxwaz ji xwendekaran kirin ku xwestikên xwe bînin ziman.

Xwendekaran daxwaza:

- Dest ji kar kêşana berpirsyarê zanîngehê
- Azad kirina wan 5 xwendekarên girtî
- Tehwîl dana fîlma ku ji xwepêşandanê hatibû girtin

Paşan 5 xwendekar hatine azad kirin û xwastikên dine wan hêlan bo hefteyek din ku qirar danîn civîneke pirs û bersivan were li darxistin.

# "Aîdz" û xurtbûna wê di cîhanê de

Selîm Zencîrî
Selim_rencberi@yahoo.com

23 sal berî niha cîhana nojdarî şahidê bûyerekî girîng di dîroka xwe de wate rû bi rû bûn tevî nesaxiyeke bê çareser û pir metirsî bi navê Aîdz bû, ku li encama vekolînên Rêxistina Saxlemiya Amerîka ve hate nasîn û di kongireya navnetewiye nojdarên cîhanê de bi (HIV) hate bi nav kirin.

Wîrosa Aîdz serweyî wan hemû arîşeyên ku bo zanist û cîhana nojdarî afirandiye, metirsiyeke mezin bo ser saxlemiya mirovan e. Ji ber ku nesaxiyeke îfonî û wîrosiye û dibîte sedema bêhêz kirina sîstema bergirî a cendekê mirovan û berevajî nesaxî yan mîkrobên din li hemberî her derman, an madeyekî şîmyayî de bergiriyê ji xwe diket. Pêştir di bas û qalên vê derheqê de, raya cîhanî xelkê Afrîqayê sebebkarên bingehiye çêbûn û belavbûna wê di




cîhanê de dizanîn û jêve bûn ku Xwedê ev belaye bo canê mirovên xirabkar hinartî ye, lê niha bi cîhanî bûna vê nesaxiyê bi taybet li Afrîqa, Asiya û di nava xelkên feqîr û belengaze welatên dewlemend de, wê nesaxiyê bi rewş û terzê jiyanê û ne elimîna hin ji wan welatan di warê saxlemiyê de dihesibînin.

Lewma serweyî wan hemû şîret û rê nîşanên ku wezareta saxlemiyê ji xwe parastin û mifah wergirtin ji rêyên pêşgîriyê dike, Lê niha di cîhanê de li gor rapora Rêxistina Saxlemiya Cîhanê (WHO) 42 milyon kes ji xulyaqetê cîhanê tûşî vê nesaxiyê bûne ku pareke zaf ji wan di Başûrê Afrîqa û welatê Rûsiyê dene. Tê zanîn ku li cîhanê her rojê 14/000 kes bi hejmara tûş bûyên vê nesaxiyê ve zêde dibin û di sala rabihorî de


Di destpêkê de raya giştî a cîhanî xelkê Afrîqayê sebebkarên bingehiye çêbûn û belavbûna nexweşiya Ayîdzê dizanîn.

nêzî 3 milyon kesan bi vê sedemê canê xwe ji dest dane, di Îranê de jî bo yekem car berpirsekî wezareta saxlemiyê dazanîn ku di Îranê de têkiliyên cinsî sedema bingehiye tûş bûn bi vê nesaxiyê ye û hejmara tûşbûyan bi 6,000 kesan ku piraniya wan jî mêr in hesiband ku vêdiçe hejmara tûşbûyan ji vê qasê jî zêdetir be.

Bê şik têkiliyên cinsî û mifah newergirtin ji kandom û alavên pêşgiriyê, xwîn dan û xwîn wergirtin, mifah wergirtina moitadan ji sorengên hevbeş bo tezrîqa mewadê pêwendiyekî rasterast tev tûş bûn û xurt bûna Aîdz (HIV) ve heye. Lêreda hewceye îşare bi hin ji nîşaneyên tûşbûn bi vê wîrosê bihê kirin mîna: Bilind bûna astê kelijînê , êş û azara gewriyê (hewik), sorbûn û xuryana kewilê mirov û werîna pirça ser, îfoneta perdeyên guh û di qonaxa dirêj heyam de jî zigçona berdewam, lawaz bûn û hatine xwara giraniya cendek, xuhdana şewane, birîndar bûna dev, nesaxiyên pêstî û mezin bûna sipel û cerg û nemaze îfoneta mejî jî pewre ye. Lewre tenê rêya pêşgiriyê, xwe parastin e û tenê bas di çarçoveya guherîna rewşa jiyana mirovan de danan, eyankerê nenasîn ji pêwendiyên aloze aborî – civakî û newekhewiya hêz (qavet) û deselat di navbera qat û du cinsan de heye ku ew jî ne tenê çareser û pêşgîriyê nake, belku dibîte alîkarek bo xurt bûna wê.

Lê rastiya veşartî li pişt xurtbûna vê nesaxiyê pêwendî bi hewcehiyên aborî, civakî ve heye hetanî girayişên kesî û riftar û qaideyên tax, qat yan qewmekê. Lewma sekinandin yan nehêlana xurt bûna nesaxiya Aîdz (HIV) hewcehî dan û sitandin û guftûgo yên zelal û zanistî derheq bi nesaxî û xweparastin û guherîna sîstemên civakî û misoger kirina îmkanat û pêdviyên rojaneye jiyanê heye, lewma misoger bûna jiyaneke azad û paqij û dûr ji wan belayane hewce bi alavên weke aştî, azadî û wekhevî di warê cinsî, toxmî, tebeqatî û... hwd heye ku ew jî di çarçoveya yasa û qaûna welateke kevnarperwere weke Komara Îslamî a Îranê de mehel e.

***Jêder: Kovara îlm û Camie Malpera BBC***

Bernameyên Radyo Dengê Kurdistana Îranê li ser înternêtê guhdarî bikin:
www.rdki.com

Email:
rdk_iran@yahoo.com
daneshjooyekurd@yahoo.com

Rojnameya Agirî li ser vê malpera înternêtî bixwînin:
http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci.htm

Fax:
**0012703425105**
Email:
Rojnama_agiri@yahoo.com
Agiri2003@hotmial.com

# Dimdim Kela berxwedanê

Amadekar: Sîtawo

Şanazî û serfiraziya her neteweyekê girêdayî bi dîroka wê neteweyê ye. Gelê Kurd jî yek ji wan neteweyan e ku xwediyê dîrokekî dûr û dirêj û ber bi çav e.

Di dîroka gelê Kurd de zaf bûyerên tal û şirîn hene ku bas û navê wan wekî remza berxwedaniya gel û pêşengî û girîngiya rêberan bi serbilindiyeke mezin tê bîranîn û gernasiya gelê Kurd bi hebûna rabihoriyek wisan, her tim serfiraz dibe. Yek ji wan bûyerên kevnar û mezine dîroka gelê me serhildan û berxwedana Kela Dimdim û şehîd bûna Emîrxanê Biradost (Xanê Lepzêrîn) di destpêka sedsala 17'an de ye. Ev bûyere di dîroka Kurdan de cihê xasmaniye xwe heye û di gelek pirtûk û her wisan zaf sitran û helbestên berxwedaniye gelê me mîna remza serkevtinê hatiye nirxandin.

### Kela Dimdim çima û ji aliyê kê ve hatiye ava kirin?

Di serdemê deshilata Şa Ebasê Sefewî de, ku wî Şayê zalim û xwînrêj zilm û zoreke zaf li Kurdan dikir û dixwest bac û xerac û talanê ji Kurdan bistîne, li ber wê çendê gelek xelkê bê guneh û sivîle Kurd kuşt û welat xapûr kir. Di wê demê de Xanê Lepzêrîn nekarî wê zilm û zorê bipejirîne û bi mêrxasî serhildana xwe dest pê kir û tu car li hember wî Şayê zalim de serê xwe neçewand. Di mil milanêya zêde xweziya Sefewiyan û dewleta Roma Rojhilat de Xanê Lep Zêrîn ku bawerek qahîm bi gel û welatê xwe hebû tevî yek ji wan du aliyan rê neket û bi mêrxasî berevanî ji xaka xwe kir û tevî wan şer kir. Emîrxan li yek ji wan şerane de destekî xwe ji dest da, nav û dengê egîdî û mêrxasiya Xanê Lepzêrîn belav bû û gehişte guhê Şa Ebas û Şa cehd kir ku Mîrê Biradostî bikêşe bal xwe, her li ber wê çendê destûr da ku destekî ji zêrê xalis ji Emîrxan re çê bikin û mal û heyiyek zaf pêşkêşî wî bikin, li ber wê çendê bû ku Emîrxan bi navê Lepzêrîn nav dengê xwe derêxist.

Di wê demê de li ber rewşa aloze deverê û şerên di navbera hakimên deshilatdar de, Emîrxan ji Şa xwest ku bo wî keleke çê biket da ku dema leşkerê Romê êrîş kirine ser deverê, ew bikare



Kela Dimdim li geliyê Qasimlo ya Urmiyê

**Wêne ji Ezîz li Urmiyê**

berevaniyê biket û jin û zarok û eşîra xwe biparêze. Bi izna Şa û bi fermana Emîrxan li sê kîlometriya bajarê Urmiyê li ser çiyayek bilind xirîtê kelê hate darêtin û çêkirina wê dest pê bû.

Piştî çend salan çêkirina kelê xilas bû û ew kele bi navê kela Dimdim hate binav kirin û danîna vî navî jî ji ber wê çendê bû ku ev Kele li ser çiyayek bilind li geliyê Berandêzê de hatibû ava kirin û navê wî çiyayî jî di bingeh de Dimdim bûye.

### Hilkevtina Kelê û çawaniya ava bûna wê

Kela Dimdim wekî hate bas kirin li çiyayek bilind û li ser kevirekî yek parçe hatiye ava kirin û du rexên wê ên bakûr û başûr du geliyên kûr in ku bi hebûna wan geliyan kelê çi hewceyî bi hisarê nebû. Sê derwazeyên kelê hebûn ku yek bo aliyê Mûsilê, ya din bo aliyê Tehranê û ya sêyan bo aliyê Wanê hatibû danîn, û li ber her derwazeyekê birceke mezin ji bo zêrevanî kirin ji kelê hatibû ava kirin û her yek ji wan bi xwe mîna kelekê xuya dikirin. Bi hebûna wan bircane gelek îza bû ku êrîşker bikarin bigehine binya kelê.

Ava kelê ji çal û enbarên mezin de dihate parastin û bi ava baranê tijî dibûn. Li başûrê kelê de bendavek hatibû çêkirin ku li zivistanê de bi ava befrê tijî dibû. Ev ava bendavê dibû sedema wê ku ava kaniyan kêm nebe.

Di nav kelê de bazarek mezin hebû ku hemû pêdiviyek di wê bazarê de hebû. Zaf bazirgan ji welatên dûr dihatine kelê û Eşyayên xwe dikirîn û wedigeriyan.

### Şoreşa Emîrxan li dijî Şa Ebas

Dema ku şa Ebas dît kela Dimdim bûye navendeke mezine ticarî û her wisa cihê hevdîtin û kom bûna eşîrên Kurdan, li tirsê wê çendê ku Kurd li dijî wî dest bi şoreşê bikin, dest bi kuştin û qir kirina Kurdan kir. Lê mîrê Lepzêrîn jî bê deng nesekinî û bi mêrxasî şoreşa xwe bi dijî Şa Ebas da dest pê kirin û di sala 1019'e Rojî de Kela Dimdim kire navenda rêxistina Kurdan.

**Hey Xane, Xane, Xane**
**Ser Dimdimê dûmane**
**Şerê şahê Eceman**
**Li ser banê Kurdan e**
**Xan dibêje gelê xwe**
**Pir xweş bikin şerê xwe**
**Hûn bikin kar û xebat**
**Bibin xwediyê warê xwe**
**Zerî derketin cut cut**
**Xayînan welat firot**
**Wan digot Kurd nemane**
**Neyaran warê me sot**

Şayê Îranê ferman da ku leşkerek ji Eskerên wî bi serokatiya Qulîxan biçe bo Kela Dimdim û kelê xapûr û akinciyên wê qir bikin. Leşkerê Îranê meşiya û li çiyayê Dimdimê kel dorpêç kirin. Lê ewan tu car nekarîn herine hundirê kelê. Bi fermana Emîrxan şer dest pê kir




**Wêne ji Ezîz li Urmiyê**

û piştî çend rojan Qulîxan û hemû leşkerê wî bi destê Kurdan hatine kuştin.

Dema ku Şa Ebas zanî leşkerê wî hatiye qir kirin, carek din leşkerek ku çend hemberî leşkerê berê bû hazir kir û bi serokatiya Serdarxan şande kelê û ji wî re got heta kel neyê wêran kirin nabe hûn wegerin. Serdarxan jî mîna Qulîxan kel dorpêç kir û dixwast biçe nav kelê, lê wî jî nekarî.

Piştî çend mehan ku kel di hisara leşkerê Îranê da bû hêj nekarîbûn herin nav kelê, Serdarxan fikirî û got: Heke em çavkaniya ava kelê peyda bikin û wê kor bikin, dê Xanê Lepzêrîn bi derba tênîtiyê dê xwe teslîm bike. Lewma geriyan heta çavkaniya ava kelê peyda kirin û ew zuha kirin, akinciyên kelê heta heyamekê karîn bi mifah wergirtin ji ava enbarên kelê bijîn û berxwe bidin, lê piştî xilas bûna ava kelê Emîrxan ji ber vê çendê ku eşîra wî û jin û zar û zêçê wan nekevin destê dujminan piştî girtina şûra kelê ferman da ku kel were teqandin û got: "Mirina bi şeref û berxwedanî baştir e ji mirina bi destê dujmin".

**Dê gidînû bikin bilezînin**
**Barûtê zû ji çalê derînin**
**Kela Dimdimê hemû biherifînin**
**Bila dujmin bibînin teslîma me tuneye.**
**Zû kirin û lezandin,**
**Barût ji çalê derandin**
**Kela Dimdim teqandin**
**Hemû Kurdistanê nîşandin**

Piştî teqandina kelê, akinciyên wê bi hevre li nav xwîna xwe de gevizîn û bi şehîd bûna xwe rûpelek girîng di dîroka berxwedaniya Kurdan dan tomar kirin.

Dema ku leşkerê Îranê çû nav kelê, wan dît ku kes sax nemaye. Di vê demê de Serdarxan kar kir qasid bişîne cem Şa Ebas.

Ewî nivîsî:

Ew emrê ku te bo navbirina Lepzêrîn û herifandina Kela Dimdim dabû, hate cî bi cî kirin û min Kel xirab kir û Kurd hemû qir kirin.

Serdarxan

# "Anatomiya Bedena Mirovan"

Di meha Adarê di nav weşanên "Deng" da pirtûkek nû bi navê Anatomîya Bedenê Mirovan derket. Ew pirtûka li ser zanistê bijîjkî bi zimanê kurdî hatiye nivîsandin. Anatomîya Bedenê Mirovan pirtûkek ewlî ye ku di beşê îlmê xwezayê bi tîpên latînî hatiye nivîsandin. Bilî wê pirtûkê di sala 1978 li Bexdayê pirtûkekî din bi navê Giyanê Mirovan (Human body) ji aliyê Dr. Azîz Reşîd Akreyî bi tîpên Erebî û bi du zimanan (Inglizî, Kurdî) hatinbûn nivîsandin.

Pirtûk bingehên îlma anatomî bi 51 şikil û şanan dide naskirin. Ew pirtûka ne ji bo zanîngehên li ser îlmê bijîjkî ye. Lê ji ber ku bi zimanekî zelal hatiye nivîsandin zarokên dibistan navberî, zarokên dibistanên jorîn, beşdarên qursên kurdî li welat û derveyî welat û hemû kesên ku zimanê kurdî dixwazin hîn bibin dikarin bi wê pirtûkê bixebitin.

Armanca ji bo çap kirina wê pirtûkê ew bû ku zimanê kurdiyê dewlemend li ser bêja antomîda jî li jîyan bihêlin û pêşda bibin.

Nivîskarê pirtûkê Doç. Dr. Husên Bektaş li pêşgotina pirtukê da wisa dibêje:

(...)




„Anatomî îlmekî gelek kewn e. Mirov berî hezaran bi salan ser anatomî xebitîne. Li Mezopotamya mirovan mîh serjêdikir û gor şiklê kezaba reş li ser nexweşîyan teşhîs dida. '(....)

Heta wê çaxê ji mirovan him şiklê organan him jî hindek fîzîyolojiyê wan, wekî mezinbûna kezeba reş, nasdikirin. Ji bo vê yekê jî mirovan dikarî li mezopotamiyayê berî hezaran bi salan ameliyatê çavan û yê kîsika mîzê çêbikin. Wek tê zanîn ew ameliyatana di dîroka mirovatiyê da yên ewilî bûn. Lê pir mixabe ku, li welatê me da pir tişt pêşta neçûn. Em li ser rêya bav û kalên xwe neman û ketin nav nezanî û tariyê. Welatê me hat parvekirin û zimanê me hat qedexe kirin. Ji bo vê yekê jî, li berê îlmê bi zimanê Kurdî pêşda neçû.

(...)

Ger rojekî me di dibistan û zanîngehên xwe da bi zimanê Kurdî ders da, em dikarin vê pirtukê wekî bingeh bigirin û wê pêşve bibin."

Nivîskar li dawiya pirtûkê ferhengekî anatomî bi 5 zimanan jî kiriye ser ku mirov dikare navên organan û anatomiya mirovan bi kurdî hin baş hîn bibe û dikare bi zimanên din wek Tirkî, Îngilizî û Almanî û Fransayî bide ber hev.

Doç. Dr. Husên Bektaş li sala 1961 li Kurdistana Bakur li Kanireşê li hêla bajarê Cewaxçurê hatiye dinê. Paşî xwendina Lîsê, derket derveyî welat û li Almanya federal da li ser îlmê pizîşkî xwend.

Di sala 1990 da fakûlte qetand û niha li nexweşxana zanîngeha Hannover da li ser bêrê cerrahî û naqîlkirina organa wek doçent dixebite.

# Şert li ser cigareyekê

Siyamend Terbî

Meha Adarê dest pêkiribû û bihara bûka sirûştê hêdî-hêdî bi ser zivistanê de zal dibû û beroj û nizar û deşt û çiyayên Kurdistanê ji gule newroz û yasemîn û asmînan xemilîbûn. Li derdora gund keviyên befrê hêşta li dol û alesûyan de mabûn. Kerên pezan tevî berx û karan di nava çîmen û mêrgan de mijûlî çerînê bûn û şivan li kêleka Pez li tenişta kuçkê agir bilûr lê dixist. Dengê kalîna Berxa sava ya ji dayîkê qut bûyî, wek zarokê biçûk dihate guhdarî kirin ku dayîka xwe winda kiribe. Li nav gund her kesek mijûlî karekê bû. Hin kes li hevşan û hinek din jî li ser banan rûniştibûn û xwe dabûne ber rojê. Zarok mijûlî leyîza **topşeqanê** û **koza coxanê** (çelholanê) bûn. Dûkela kulekên banên xaniyan wek boriyekê dihilkişa û di nav esmanê sayî û şîn de meh dibû.

Meta Besê tev Gozela xêzana xalê Siltan di hewşê de rûniştibûn û Gozelê teşî dirist. Meta Besê ji Gozelê pirsyar kir:

- Ev hiriye bo çiye tu dirêsî?

- Metê tu bi xwe dizanî eva bihar e û me werîs çininin û dibe yek du werîsan wehûnim bo şolê û bo giya kêşanê hewce ne.

Meta Besê di bersivê de got:

- Ma çi qeydî ye kiça min, ev tiştane bo malê pêdivî ne.

Besê ji Gozelê pirsî:

- Herê pirsyar bê eyb be, Siltan û Elî li kuderê ne?

Gozelê got:Siltan çûye ber Pez û Elî jî bi hevalan re li hemberî gund mijûlî kengir kirin û leyîz û yariyan e.

Dengê teqîna guleyekê bê dengî şikand û bi ser dengên din de zal bû û Gozelê got: Hey Xwedê neeletê ji we bike (Pastar), ez tirsam!

Bo çî tu ditirsî! Eva hemû rojê halê Pastar û Caşan her eva ye.

Meta Besê got: Qet ez ne tirsame! Lê bi vê teqê dil û hinavê min hejiyan. Piştî demekê dengê qîrêna zarokan bilind bû û li hev civiyan û xelk bo aliyê nizarê hemberî gund meşiyan. Dilê Gozelê tenga bû û got: Meta Besê eva çi bûye? Xelk diçine aliyê dinêye gund! Wek evê ku yekê di guhê Gozelê de tiştek gotibe! Gelek nigeran bû û çavnihêriya nûçeyek tal û nexweş dikir. Teşî fire da û bilez xwe gehande xulyaqetê û xelk vêde da û çu pêş. Çaxekê mêze kir dest û pêyên vê lerizîn û bi her çi hêz û şiyan ku hebû qîrand û xwe avête ser cenaze û bi dengê melûl lorand û wek tayên baranê rondik bi ser rûmetan da hatin xwarê. Elî ciwanê nûgihîştî di nava gula xwînê de gevizî bû! Guleyek ji kêleka rastê girtibû û ji kêleka çepê hatibû der. Xelkê piştî demekê cenaze hilgirtin û bo aliyê gund birin. Dayîka bextreş bi zehmet gav hildigirt û destê kurê xwe di givaşt û dilorand:

Menal, menal, birîndaro Menal, birînên birînadrê mala babê min kûr in Menal! Hûn bi Xwedê birîndarê mala babê min evdala Xwedê neleqînin, birîn kûr û bêderman in menal!

Xelkê ji hev dipirsî ku ev gule li kuderê hat û kê teqand û çima Elî hingavt?! Gelo sûç û guneha wî çi bû?

Di bersivê de gelek kesan gotin: Dengê teqe ji paygahê hat. Lê bo çi û çi kesekê teqe kiribû? Hêj xuya nebû.

Kesekê got: Me gelek pêxweş e hûn bizanibin ku ev gule ji kuderê û ji aliyê çi kesê û bi çi meramekê hate teqandin.

Hacî Kerbelayî û Meşedî Oric, 2 Pastarên paygeha gund bûn ku li ser dîwarê derdora paygehê rûniştibûn û çav ji derdoran dikirin. J-3 (tivinga Jêsê) di destê Hacî Kerbelayî de bû. Basa armance û nîşanganê dikirin, ku kîjan ji wan dikare nîşanî bipêkive, çi kesê bo yê din nediselimand. Aqibet hatine ser vê bawerê ku nîşanekê danên. Lê bo nîşangê çi tiştek hilbijartibin baş e!!!

Bedela kevir yan xwedîk yan tiştên dinê, Eliyê law û bêguneh, ku cihê hîviya pêşeroja dayîk û babê belengaze xwe bû, bû bi armanca wan.!!! Lê Şert (girev) çi be başe?!!! Cigareyek!!!

Belê serbaz (leşker)ên Îmamê Zeman û Îslama Naba Mihemedî bo cigareyekê canê mirovekê lê standin û dayîkek hinav sotî û birayek pişt şikestî û malbatek behîdar kirin.

**Têdîtin: Ev bûyere di yek ji gundên herêma Urmiyê qewimî ye.**

## Gotinên mezinan

❍ Bi werîsê dînan xwe bernede binê bîran.

❍ Çi ba bê, çi baran, her ji emrê berfê kêm dibe.

❍ Kêm bijî bi serbestî, neku hezar salan li bindestî

❍ Ev mala ku jin ava bike, kes nikare xirab bike.

❍ Hindî dujmin li bîra te ye, cihê te ne mala te ye .

❍ Dinya bibe bihost, neyar nabe dost.

❍ Bihostek xesarî, gezek xusaret e.

❍ Ev dara ku sîbera wê li bin wê nebe, çi qîmetek nin e.

❍ Her kes qibla mala xwe baştir nas dike.

❍ Çelengî bi bê zanîn mîna agirek bê ronahî ye.

❍ Mirovê tenê, wekî teyrê bê bal nikare bifire.

❍ Mirina tevî hevalan dawet e.

❍ Şêr nakevin dawên Riviyan.

❍ Çi ewraz bi bê nişîv ninin.

❍ Ji dilê xweş re hertim bihar e.

❍ Nizane dîlanê here, dibêje hewş xwar e.

❍ Ew girêya bi dest vebe, hewcehî bi didanan nake.

❍ Xeber diçine esman, jorda têne xudan.

❍ Ew çav kore bît ku dujminê xwe nas neke.

❍ Her teyrek tevî refa xwe.

**Doma rûpelê 20**

# Pandomîmgerê mezin û şanogerê hosta xatirê xwe ji me xwest

SALIHÊ KEVIRBIRÎ
salihkevirbiri@hotmail.com



Arsen Poladov di roja 1'ê Nîsana 2004'an li bajarê Yaroslavlê ya Rûsyayê mir

Arsen Poladovê ku bav û kalên wî ji dorhêla Serhedê, ji warê Qers-Agiriyê piştî 'Qirkirina Fileh û Êzîdiyan' berê xwe dabûn Ermenistanê, ji malbeteke kurdên êzîdî bû.

Di sala 1942'an de li Paytexta Ermenistan, Erîvanê çavên xwe ji jiyanê re vekir. Beşa Felsefeyê ya Zanîngeha St. Petersbûrgê di pola sêyemîn de terikand. Paşê Beşa Rejîsoriyê ya Zanîngeha Moskovayê kuta kir û li Parîsa Fransayê, ji Pîrê Pandomîmê Marseille Marso bi qasî du salan dersên pandomîmê dît. Di sala 1971'ê de bi handan û piştgiriya Yekîtiya Sovyetê li Erîvanê 'Dibistana Pandomîmê ya Arsen Poladov' hate vekirin û Poladov li vê dibistanê bi sedan şagirt perwerde kir. Piştre, bi destûra Wezareta Çandê ya Yekîtiya Sovyetê, 'Şanoya Dewletê ya Moskovayê' hate avakirin û Poladov li wê derê wekî rêveber-derhêner hate ser kar. Di heyamê 1975-1995, raserî 20 salan bi sedan şagirt û şanoger gihand. Poladov, ji sala 1995'an heta roja ji nav me bar bike, li 'Beşa Dîroka Pandomîmê ya Zanîngeha Dewletê ya li Yaroslavlê' wekî hîndekar kar û xebata xwe berdewam dikir.

Zor şanaz û bextewar im ku hevnasiya min û Hoste Poladov pêk hat û bûm hevparê civat û sohbeta wî ya têrtije û xweş. Ne şaş bim, yekem car di sala 2001'ê de li Akademiya Kurdî ku wê demê li Durena Almanyayê bû me hev dît. Ji bo xebatên şanogerî û pandomîmê hatibû vexwendin. Li gel ku temenê wî wê demê li dora 60'î bû, wekî xortekî 18 salî çalak û xwîngerm bû. Her dixwest tiştên çak bide şagirtên li Akademiyê lê ji gotinên wî derdiket holê ku bi gilî û gazinc e. Diyar dikir ku sazî û dezgehên kurdan zêde bala xwe nadin çand û hunerê.

Cara duyem û bi awayekî dorfireh sala par, me li Diyarbekira paytext, li Ameda rengîn civat li hev sor kir. Poladov, wekî mêvan û dersdarê atolyeya şano û pandomîmê ji Rusyayê bo 'Sêyemîn Festîvala Çand û Hunerê ya li Diyarbekirê' hatibû vexwendin. Ji Stenbol û Îzmîrê, ji gelek bajarên kurdan şagirtên kurd xwe li dersên Mamosta Poladov girtibûn û li karê xwe sor dibûn.

Di serdema festîvalê de gelek caran, ligel bi dehan hevalan; carinan jî yek bi yek derfet û mecal çêbûn ku em/ez û Poladov li hev rûnin û behsa gelek tiştan bikin. Poladovê ku her roj bi çend kovar û rojnameyan re gotûbêjên wî hebûn, di van hevpeyvîn û sohbetên xwe de 'wekî her car' diyar dikir ku kurd li hunera şano û pandomîmê xwedî dernakevin. Baş tê bîra min, Li 'Turîstîk Otêla' ku wekî mêvanê festîvalê em lê diman, ji nûçegihanê ciwan ê Rojnameya Evrenselê re wiha digot: "Dixwazim ji kurdên me yên li Tirkiyeyê komekî şanoyê yê ji ciwanan pêk hatî ava bikim. Heger xwedîtî li vê projeyê bê kirin, emê bikaribin 20-30 ciwanên kurd li Moskovayê bidin xwendin. Ji ber helwestekî xerîb xemgîn im. Tu sazî û dezgeh, ji min re negot; 'Piştî festîvalê 1,5-2 meh bimîne, em bi hev re kar û xebatê bikin!' Ez bixwe bikaribim, ezê meheke din vîzeya xwe dirêj bikim da ku tiştekî bidim ciwanên kurd..." Mixabin ku Arsen Poladov, piştî ku vegeriya Stenbolê, nekarîbû zêdetir li Stenbolê bimîne û berê xwe dabû bajarê ku lê dimîne Yaroslavlê.

Hêjayî gotin û pesindanê ye ku Arsen Poladov, piştî Marseille Marso di warê pandomîmê de li seranserê cîhanê wekî hosteyê pandomîmê dihate hesibandin.

Bi dehan pandomîm, şano û skêcên ku Poladov bi xwe nivîsandine û derhêneriya wan kiriye, li gelek bajarên cîhanê hatine lîstin û gelek hatine ecibandin.

Heta niha der barê Arsen Poladov de 2 pirtûk hatine nivîsandin.

Oxira te ya xêrê be hosteyê mezin Arsen..!

## BI MERE XWEŞ E

Berken Bereh (ÊŞ)

Em dibêjin stranan herî xweş delala min
Herî xweş em dinvîsin û dixwînin helbestan
Û dema me hez kir
Ji vira heta ba xwedê
Mînak serkaniyek zelal û paqij
Wek şîrê dayikan
Helal û avnedîtî.

Bêhtir li bejin û bala me tê kovanî delala min
Hesret bêhtir li me
Û necamêrî
Hê neketiye ferhenga me.

Jiyan bi me re xweş e delala min
Hevalitî bi me re
Wek sûlavek
Wek çemê dicle nazenîn
Diherikin di masûlkeyên jiyanê de
Dijîn
Têra xwe.

Bi me re xweş e bîranîn delala min
Mirin bi me re xweş e
Li ser çiyayekê
Di grewekê de
Di dil da evîn
Berxwedayî heta dawî

**Doma Rûpelê 20**

# 106 saliya Rojnamevaniya Kurdî pîroz be

**Amadekar:Bozê Sîna**

Di dawiya sedsala nozdan de, hizr û ramana neteweyî ku piştî Şoreşa Firanse li sala 1789'an di welatên Ewropayî de ser hildabû, ji sînorên Împiratoriya Osmanî jî derbas bû. Rewşenbîrên neteweyên mîna Ereb, Elbanî û Bulxarî di hizra kesayetiya neteweyiye xwe de bûn û ji bo destve anîna serxwebûna xwe di bin siya Tirkên Osmanî de xebat dikirin.

Rewşenbîrên Tirk jî ketin bin bandora vê seha neteweyî û pêşengên hizra Pan Tirkîzm, ku piraniya wan li welatên Ewropî dijiyan, ji bo pêk anîna dewletekî Tirkî hewl didan, bi ava kirina rêxistin û weşandina rojname û kovaran hizra netewiye xwe belav dikirin.

Di wî çaxî de yek ji rewşenbîrên pêşenge Kurd, Mîqdad Mîdhed Begê Bedirxan Paşa bû ku Malbata wî yek ji deshilatdartirîn Mîrên Kurdan bû. Babê Mîdhedbeg dijberî Dewleta Osmanî şer hilda, lê Dewleta Osmanî bi alîkariya hêzên bîhanî û pîlanên navxweyî, Şoreşa Bedirxan di sala 1847'an de ji nav dibe û di encamê de Mîqdadbeg bo Qahîre paytextê Mîsrê tê dûr kirin. Di wê demê de ye ku yekemîn rûpelên rojnamevaniya Kurdî di dîroka gelê Kurd de bi destê babê Rojnamevaniya Kurdî, Mîqdad Mîdhed Bedirxan dest pê dike.

Yekem Rojnameya Kurdî di demek pir aloz de tê weşanidn, ku gelê Kurd ji hemû aliyan ve ketibû bin gef û gurên nemanê, di demekê de ku rê li ber peyva azad


**Mîqdad Mîdhed Bedirxan**

ya bi Kurdî hatibû girtin, Mîrê nemir û hêja Mîqdad Mîdhed Bedirxan dît ku neteweya Kurd pêdivî bi rêyeke ragehandinê – rêya rojnamevaniyê – heye. Ji ber ku Rojnamevanî di parastin, pêşde birin û dewlemend kirina zimanê her neteweyekê de roleke zor bilind û berfireh dilîze. Her wek bo me xuya ye, rojnameya KURDISTAN, dûr ji axa Kurtdistanê, li welatên biyaniyan hate weşandin. Mîqdad Mîdhed Bedirxan li ser sedema weşandina rojnameyê wiha dibêje: *"Li dinyayê çiqas Misilman hene di gund û bajarên hemiyan de dibistan û rojname hene. Bûyerên li dinyayê diqewimin di van rojnameyan de tên nivîsîn. Lê mixabin Kurd ji rojnameyekê bê par in û nizanin di dinyayê de çi diqewime, cîranê wan Mosqof çawa ye dê çi bike. Loma di riya Xwedê de min ev rojnama ha nivîsî. Bi îzna Xwedê Teala ji niha pê ve di her panzdeh rojan de ezê rojnameyekê binivîsim. Min navê wê kiriye KURDISTAN. Di vê rojnameyê de ezê qala qenciya zanyariyê û têgihîştinê bikim; li ku derê mirov fêr dibe, li ku derê xwendingeh û dibistanên qenc hene, ezê nîşanî kurdan bidim; li ku derê çi şer dibe, dewletên mezin çi dikin, çaxa şer dikin, tîcaretê çawa dikin; ezê qala hemûyan bikim."* Her wiha Mîqdad Mîdhed Bedirxan li sergotara yekeme rojnameya KURDISTAN'ê de bi eşkere qala hin pirsgirêkên aborî, civakî ên Kurdan dike.

Weşana KURDISTAN'ê, Kurd tevlî cîhana ragehandinê kir. KURDISTAN (yekem rojnameya Kurdî), di heyamê 47 meh û 22 rojan de, 31 hejmar jê derçû û ev welatane jî pîwan e: Ji hejmara 1 bo 5'ê li Qahîrê, ji hejmara 6 bo 9'ê li Jinivê, ji hejmara 20 bo 23'yê dîsan li Qahîreyê, hejmara 24'an li Londonê, ji hejmara 25 bo 29'an li Folkistona Başûrê Îngilîstanê û ji hejmara 30 bo 31'an careke din li Jinivê hate weşandin.

Li ser navê xebatkarên Rojnameya **Agirî** bi boneya 106 saliya Rojnamevaniya Kurdî, pîrozbahiyên germe xwe pêşkêşî gelê Kurd bi giştî û nemaze rojnamevan û nivîskarên Kurd dikin ku di hêla rewşenbîrî û xebata neteweyî de çepera berxwedaniya gelê Kurd bûne.

**Jêder: Arşîva malpera** www.dengekurd.com

# Bingehên rêzimana kurdî

**Berhemeke nû ya Dr. Kamiran Bêkes**

Berî çend rojan berhema Dr. Kamiran Bêkes **"Bingehên rêzimana kurdî – zaravê kurmanciya bakur"** li Almaniyayê ronî dît û dest bi belavkirina wê bû. Berhem ji 378 rûpelên DIN5 hevedudan e û 17 biran di xwe de dicivîne: **Deng û tîp, kît, bêje û darijtina bêjeyan, navdêr, tewandin, jimarnav, veqetandek, bernav, rengdêr, hoker, gihanek, baneşan, daçek, lêker, kesandina lêkeran, heveksazî, rastnivîsandin.**




Berhem bi durvekî baş hatiye çapkirin û hunermend Reşad Yosêf berga wê amade kirî ye.

Naveroka berhemê jî gelek dewlemend e û, weke li jor jî hatiye diyarkirin, hemû aliyên rêzimana Kurdiya Kurmancî şirove dike.

Ji bo xwastin û agahdariyê hûn dikarin têkiliyê li ser e-mail yan telefona jêrîn bikin:

E-mail: **kamiranbekes@hotmail.com**

Telefon: **0049 (0) 541 685 35 42**

# Bayê evînek pîroz

Şehab Xalidî

Çend sal bû ku bayê evînek pîroz xewn û xeyalên min dabû ber pêlên xwe û hêlûna xwe di nav baxçeyê xewn û xeyalên min de awa kiribû di şevek zilmat û tarî de berf, ba û kirovê destê xwe dabûne hev û dar û berên gundê me req kiribûn vê şevê dengê tiqe tiqa derî ez ji vê xewn û xeyala kûr û bê binî veciniqandim, min bi xwe got, "xwedê tu bêjî vê çaxê şevê eva kî be ku karîbe dilê berf, ba û kiroveyê şeq şeq bike û xwe bigehîne vira, min derî jêre vekir, bêje te çi dît? Ev evîn û xeyalên min bû, min evîna xewn û xeyalên xwe dît.

Simbêlên wî li ser lêva de şiqitîbûn axabaniya wî li ser çek û rextên wî de şor bibû.

Hate jor û rex min rûnişt ev şev ne şibê şevên caran bû vê şevê girnijînê li ser lêvên min ên şeq şeq bûyî sema dikir dema min gotê, erê tu nabêjî min, tu çima bûyî biyaniyê welat? Axînek hatê, ew axîn çavkaniya hesreta wî bo dîtina tîrojkên rojê bû, û gote min, rondikên çavên zarokên sêvî û êtîm, stêrkên xendiqî, têr nebûna Ejdehayên birsî ên nava girtîgehan ji xwarina goştê canê kevokên nava qefesan de, çikbûna bi hezaran dilopên ava zelal ji çavê kaniya dilovan a Helebçê, xeza(cehad) a pîrê cemaranê, birîna şêne û darên reh istûre Qarnê, Qelatan, Helebçe, Gêçî, Piyançix û … temirandina agirê Çehrîqê, ku gorên har, û birsiyê berx û karên welatê min, nediwêran xwe nêzûkî tên û goriya wî bikin.

Şîn û taziya buhara rengîn seba verandina sorgula dêmistanê li çiwar çira a mehabadê bi xwînê sor bûna rumetê pûşperê seba kuştina Pêxemberê Aştiyê daxbariya pel pelîkên Bokanê seba fetisandina Bazê bilind fir ê zinarên terexê di nav mij û dûmana bêdadiyê de, ez pir şevitandim qedemên min şikandin goştê canê min helandin. Erê dîroka me pir e ji bêbextî, girtin, kuştin, îdam û… Ez nizanim, ne ez nizanim çavan erd û esman naqelişin, şeq nabin, ji vê bê bextiyê ji vê bêdadiyê" rondik ji çavên min hûr hûr dihatine xwerê, dilê min tijî ji hêrs û kerb û kîn ji neyaran, min ev kerb û kîna di dilê xwe de bi hewar û qêrînê rêt, ey felek, ey xayîn felek ey bêbext ey…"

her wê şevê min sond xwer ku çavê min û xew bi hevre bîhanî bin, di tarîtiya çi şevekê de merhebayê ji hev nekin, tiliya min a Şahidê û maşeya çeka min jî heya roja Azadiyê dost û hevalê hevbin. 7 sal bihorîn, 7 salên hankî hişk, sar û xerîb. Di vê zivistana hişik û sar de pênûsa min di nav tiliyên destê min de mîna tûrê direcife û ji nivîsînê aciz e,lewma ez dilê pênûsa xwe naşkênim û wan çend peyvan jê re diherikînim, gelên jêrdest rizgar bûn, bûne dewlet, bûne xwediyê alaya xwe, dirafê xwe, û sînor rabûn û neman, lê welatê min hêla jî li hesreta Azadiyê de jar û perîşe ye. Ey zzadî, bes e, bes e, di nav xewn û xeyalên min de derkeve û bibe rastî, bila xewn û xeyalên min jî kêmekê. Biêvirin kêmekê biêvirin

# Xevnên şeva

Elî Munezemî

Çiya, deşt û nevalan kirasê xwe yê sipî dirandin, lê ez nabînim kêlên şehîdên me serê xwe derxînin û al al û beybûn mezarê van bixemilînin.

Ez nabînim kevok, qaz û quling gel refên keva bi keyf û şayî li ser gulistanan de bifrin û nayê guhê min vîte vîta şalûl û bilbilan, qebe qeba kevên nav teraşan, hişe hişa ava kaniyên bi gul û rihanan dor girtî, şîhêna hespên kumêt û kalîna berxên sawa.

Ez nabînim heyv bi rûmet û tîrojkên xwe yên zêrîn evîngeh û civînên evîndaran ronahî biket.

Ez nabînim bêrîvanên bedev û bejin zirave satil bidest ku ji bêriyê vedigerin. Ez nabihîsim dengê zelale bilûra şivanan û dengê pêyê mêrxasan di bêdengiya şevê de.

Ez nabînim bejna pêşmergên di nav rext û çekan de pêçayî ye keleşînkof bi mil ku şerê azadiyê dikin.

Ez nikarim vexum ava cerên nav gidîşê û ça a çaydanê ser kuçika ku bi ava kanîyên binya çiyayên Kurdistanê hatine tijî kirin.

Eve hemû dîmen û xelatên welatê min bûn, lê hesreta van min re bûne xevnên şevan.

## Pêşangeha nîgarkêşiyê bo Hunermendê law, Ehmed Salihî



Roja şemiyê 20.4.2004 pêşangayek hunerî di bin navê **"Bê niştîmantir ji ba"** ji aliyê hunermendê law Ehmed Salihî di hola Yekitiya Ciwanên Demokrat a Kurdistana Îranê de birêve çû.

Bê niştîmantir ji ba, ku 9'mîn pêşangeha wî hunermendî ji 50 kevalan di tewerên cur bi cur de hatibûn berhev kirin ku bi awayekî baş û berfireh ji aliyê beşdaran ve hate pêşwazî kirin.

Ev pêşangahe hetanî 3'ê rojan berdewam bû piştî hingê li bajarê Koyê hate li darxistin ku zor bi germî pêşwazî jê hate kirin.

2 nimûne ji tabloyên hunermend Ehmed Salihî





agirî

Rojnameyeke siyasî û çandiye, Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne
Hejmara 6, Aprila 2004

**Navnîşan:**
AFK
B.P. 102- 75623 Paris
CEDEX 13 –FRANCE

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci.htm

**Email:**
**Rojnama_agiri@yahoo.com**

**Agiri2003@hotmail.com**

Fax: **0012703425105**

**Bo Agirî binivîsînin**

Eger bo Agirî dinivîsin ji kerema xwe van xalên jêrîn berçav bigirin:
* Çi nivîsek bê nav û nîşan nayê weşandin. Nivîskar dikare navê dilxwaz bo nivîsa xwe hilbijêr e, Digel navê dilxwaz ji kerema xwe navê xwe yê rastî bo rojnamê bişînin.
* Eger nivîskar ji bo nivîsîn û berhev kirina mijara xwe ji çavkaniyan mifah wergirtibe, hewce ye îşare bi van jêderan biket.
* Ev nivîsên ku li zimanên biyanî hatibin wergêrandin, hewce ye îşare pê bê kirin û nav û nîşana jêderê jî bihê dest nîşan kirin.
* Hindî bikarin wêne, xerîte û belgenamên hewce tevî nivîsan bo me bişînin.

**Desteka nivîskarên Rojnameya Agirî mafê vê çendê heye ku:**

Destêwerdana rênûsa nivîsan biket. Wan mijar û babetên ku naverokek lawaz hebin belav neket.

# 106 saliya Rojnamevaniya Kurdî pîroz be

**Bozê sîna**



Pêşengê Rojnameya Kurdî , Mîqdad Mîdhed Bedirxan

106 sal bi ser temenê weşana yekem Reojnameya Kurdî dibihore. Rojnameya "KURDISTAN" ku di 22'yê Aprîla sala 1898'an de, li Qahîreyê, paytextê Mîsrê hate weşandin. Ev bizave bi wateya ahenga xebata neteweyî û rewşenbîrî tê nirxandin ku 106 sal berî niha, bi pênûs û pêşengiya babê rojnamevaniya Kurdî **Mîqdad Mîdhed Bedirxan** hatibû dest pê kirin. Îro rojê em dibînin ku Kurd di bin siya teknolojiya nû û modern de û di sedsala ragehandinê de ji hemû metodên rêxistinî û narêxistinî ji bo gehandina peyam û armancên hizr û ramanên xwe mifahê werdigire.

Gelek caran bo mirov ev pirse tê holê ku yekem rojnameya Kurdî dibe di çi rews û demekê de hatibe weşandin? Çima babê Rojnamevaniya Kurdî dibe derxistina rojnameyê ji Kurdan re hewce zanî be?

**Doma wê bo rûpelê 18**

## Dubare bûna cezayê sala 1994'an bo Parlamenterên Kurd li Tirkiyê


Parlamenter Leyla Zana û hevalên wê di girtîehê de

Dadgeha Ewlekariya dewleta Tirkiyê li Enqereyê roja 22'ê Aprîlê di rûniştina 14'mîn ya doza ji nûve darizandina Parlamenterên Kurd ên girtî, Leyla Zana, Hatîp Dîcle, Selîm Sadak û Orhan Doxan cezayê 15 saliye girtinê dubare kir. Di sala 1994'an de Parlamenterên Partiya Demokrasiyê (DEP) 15 sal cezayê giran yê girtîgehê xwaribûn. Li gorî biryarê Parlamenterên Dep'î dê heta sala 2005'an di girtîgehê de bimînin û cezayê xwe xilas bikin.

Biryara erê kirina cezayê Parlamenterên Kurd, di rûniştina roja înê 23'ê Aprîlê ya Parlamentoya Ewropayê ve bi tundî hate şermezar kirin.

## Pandomîmgerê mezin û şanogerê hosta xatirê xwe ji me xwest


Arsen Poladov mir !

Şanogerê mezin, yek ji mezintirîn pandomîmgerê cîhanê Arsen Poladov di 1'ê Nîsana 2004'an li bajarê Yaroslavlê ya Rûsyayê ku li nexweşxane ya vî bajarî dihate dermankirin ji ber têkçûna dil jiyana xwe ji dest da.

Poladov, Zanîngehên Moskova û Sorgonê di serî de; li gelek zanîngehên cîhanê dersên şano (tiyatro) û pandomîmê dida. Her wiha gelek caran ji bo dersdayîn û semîneran ji bo Zanîngehên Parîs, Berlîn û Pragê dihate dawetkirin.

**Doma wê bo rûpelê 17**